Demokrasî bo Îranê
Hejmar:3 Januarya 2004

# agirî

Otonomî bo Kurdistanê
Rêbendana 1382'e Rojî

Rojnameyeke siyasî û çandî ye
Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

## Neyarên Federalîzmê li ser bingeha neteweyî û Coxrafî di Îraqê de kî ne?

Piştî herifîna rejîma Beis û nemana deshilata Sedam Husên li Îraqê û pêk anîna Civata Deshilatdar di wî welatî de, pirsa herî girîng ji bo xelkê Îraqê ava bûna hukûmetekî gelî û demokratîk û welatekî Federalî ye. Bo misoger kirina vê meremê jî hewceye ku civata deshilatdar a Îraqê piroseya ***zagona bingehîne*** wî welatî amade biket û di vê zagonê de jî dozên girîng bi zelalî û bi hûrî bihên dest nîşan kirin û rê ji zivirîna dîktatorî û wan belayên ku bi ser xelkê Îraqê de hatine, bihê girtin.

Bi hatine rojeva pirsa zagona bingehîn ji bo Îraqê û bi taybet pirsa Federalî bûna wî welatî, hawar û gaziya hejmarek ji welatên cînarê Îraqê û welatên Erebî, li ser xwest û daxwaza gelê Kurd di Îraqê de ku Federalî li ser bingeha neteweyî û coxrafî ye, bilind bûye û ditirsin ku yekparçeyiya axa Îraqê tevî parve bûnê rû bi rû bibe û di encam de heta ew jî bi neçarî bas ji federalîzma li ser bingeha parêzgehan dikin.

Eva ku Federalî ji bo Îraqê hatiye pêşniyaz kirin, ne ji ber vê ye ku ev welate hinde pan û berîn û pirxulyaqet be ku li rêya Federalî a li ser parve bûna parêzgehan (Ustanî) baştir û kêrhatîtir birêve biçît, ji ber ku ev welate ji du gelên sereke yên Kurd û Ereb pêk hatiye û Kurd di vî welatî de bi dehan sal e ku xebat û têkoşînê dikin da ku çi din nehên pelçiqandin û tevî bûyerên mîna Enfal û Kîmyabaranê rû bi rû nebin, mafên neteweyiye wan di çarçoveya Îraqekî demokratîk de bihên parastin û hest bi deshilata xwe di wî welatî de bikin. Ku wisan e her cure Federalîzmek ku vê meremê ne hingivît û wan pirsgirêk û arîşeyên Îraqê û bi taybetî Kurdan çareser neket, dibîte tiştek mîna parve bûna Îraqê bi çend parêzgehan ku li berê da hebûn, bi wî hikmê zatî (xwe rêve birinê) ku Sedam ji bo Kurdan pejrandibû. Lewra merem ji Federalî ê bo Îraqê ku Kurd bi dehan sale jêre xebatê diket û her ji destpêkê de jî Federalî li ser bingeha neteweyî û coxrafî bûye û hewceye ku li ser vê daxwaza rewa û berheqe xwe jî pê biçeqîne.

**Doma wê 3**

**Birêz Hesen Şerefî derheq hilbijartina gera 7'an a Parlemana Îranê bo Agirî dipeyve:**

***Bo hemû aliyekê eşkere bû ku eva di Komara Islamî de biryaran dide û dimeşîne, ne Parleman û nonerên xelkê ne, belkî Weliyê Feqîh û dezgeh û saziyên ne hilbijartî û sepandî ne***

**Doma wê bo 2**


Hesen Şerefî

## Şandek Partiya Sosyalîst a Kurdistana Tirkiyê Seredana Deftera Siyasîa PDK Îranê kir



Şandek e PSK'ê pêkhatî ji birêzan: Kekê Kemal Burkay, Sekretrê berê û Mesûd Tek Sekreterê Giştî yê niha ye vê Partiyê û birêzan: Sîdar Bîngul endamê Komîteya Navendî û Utal Yardimcî, seredana Deftera Siyasî a PDK Îranê kirin. Ev şande ji aliyê rêberiya partiyê, pêkhatî ji hevalan Mistefa Hicrî, Elî Mêhrperwer, Hesen Şerefî, Husên Medenî û Mistefa Mewlûdî endamên D.S û hevalan Osman Rehîmî û Omer Balekî endamên Komîteya Navendî a Partiyê ve pêşwazî jê hate kirin.

Her du şandan di rûniştina çend saetî de li ser komek pirsên girêdayî bi rewşa nihaye deverê û pirsa Kurdan di parên din ên Kurdistanê de û derheq têkiliyên dostane û germe her du aliyan li rabihorî û niha de bîr û hizr hatin veguhestin. Hejî gotinê ye ku vê şandê di wan du rojên ku mêvanê partiyê bûn, seredana Organên cur bi cur ên partiyê kirin û ji nêzîk ve tevî kar û xebat û çalakiyên PDK Îranê hatin nasyar kirin.

## Pîroz kirina cejna 2'ê Rêbendanê li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê

Demjimêr 10'ê pêşnîvroya roja 2'ê Rêbendana 1382'e Rojî (22.01.2004), rê û resmek berfireh bi pişikdariya para herî zafe endamên rêberiya Partiyê û sedan kes ji Pêşmerge û malbatên Kurde akinciyê Başûrê Kurdistanê, hate lidarxistin. Rê û resm bi sirûda neteweyî a "Ey Reqîb" dest pê kir û piştre birêz Mistefa Mewlûdî ji aliyê Deftera Siyasî a Partiyê ve derheq vê roja dîrokî, şiroveyek pêşkêş kir û di vê şirovê de li ser giringî û xasmaniyên vê roja dîrokî tekez kir û her wisan derheq rewş û kawdana niho ya cîhan, devera Rojhilata Navîn, Îran û Kurdistanê nirxandinek berfireh pêşkêş kir û ji bo pêşeroja xebata gelê Kurd di vê rewşa nû de hêviya serkevtinê xwast.

Piştî axavtina birêz Mistefa Mewlûdî, komek helbest, stran û pexşanên wêjeyî û hunerî ji aliyê beşdarên rê û resmê hatin pêşkêş kirin. Civîn bi pêşkêş kirina çend dawetên cur bi cur ên herêmên Kurdistanê ji aliyê gurûpa dawetê ya ROJHELAT û çepikên beşdaran dawî bi karê xwe anî.

*Xwendevanên hêja, wekî xuyaye rejîma Komara Islamî li berdaye da ku li destpêka meha Reşemeya îsal de şanoya hilbijartina gera 7'mîn a Meclîsa Şêwra Islamî bi rêve bibet, derheq vê çendê ku me karîbe hizr û ramanên PDK Îranê di wê pêwendiyê de bixin ber çavên xwendevanan, Agirî hevpeyvînek tevî birêz Hesen Şerefî Endamê Deftera Siyasî a PDK Îranê pêk anî û eva jêrîn deqa wan pirs û bersivên hevpeyvîna Agirî tevî birêz Hesen Şerefî ye.*



**Birêz Kekê Hesen Şerefî, wekî hûn agehdar in, qirar e li destpêka meha Reşemeya îsal de hilbijartina gera heftan a Meclîsa Şêwra Islamî ji aliyê rejîmê ve rêve biçît, raya PDK Îranê di wê derheqê da çiye?**

PDK Îranê ev hilbijartine "tehrîm" (baykot) kiriye û daxwaz ji wan kesên xweşnav û ewên ku di nava civatên xelkê bajar û deverên xwe da xwedî hitbar û mayetê kirinê ne, kiriye ku xwe ji berbijar kirinê biparêz in û nebin sedema vê yekê ku rejîm bikare ji hitbar û maytê kirina wan mifaha xerab werbigire û bi meremên xwe ên pêwendîdar bi hilbijartinê bigihîje. Her wiha daxwaz ji xelkê Kurdistanê kiriye ku ji çûn bo ser sindûqên dengdanê xwe biparêzin û bi vî awayî careke din jî bi rejîma Komara Islamî li tewahiyeta vê da nîşan bidin ku ji siyaset û riftarên vê yên dijî azadî û demokrasiyê bêzar in û çi din rê nadin ku rejîm bi amade bûna wan li ser sindûqên dengdanê propagendeyê bike û hizr û raya giştî bi vê bilêbîne ku xelk bi bang û gaziya serok û rayedarên rejîmê ve çûne û li ser daxwza ewan li ser sindûqên dengdanê amade bûne û eva jî nîşaneya emegnasî û heza xelkê bi rejîmê û razî bûn ji siyaset û kiryarên vê ye!!

**Çima PDK Îranê ev hilbijartine "tehrîm" (baykot) kiriye?**

Hilbijartin di naveroka xwe de bi vê wateyê ye ku gel bi azadî û bê asteng bikaribin nonerên dilxwaz û bawer pêkiriyên xwe bo Parlemanê hilbijêrin û bikarin ji rêya wan ve daxwaz û pirsên xwe bînin holê û Parleman jî bi pejrandina zagon û danana rê û cihên yasayî ên baş, qazanc û berjewendiyên xelkê Îranê misoger biket. Lê hilbijartin di bin hakimyeta Komara Islamî de bi kiryar li naveroka rastiye xwe hatiye vala kirin. Evên ku xwe berbijar dikin û dixwazin wekî nonerê gel biçine Parlemanê, heta eger xwediyê hitbar û maytê kirinê jî bin û mercên berbijar bûnê jî hebin, ji aliyê Şêwra Nobedar a rejîmê ve têne bêjîng kirin û eger kesên dilxwaze rejîmê nebin, bi taybet eger seheke neteweyî û gelî bûn û merem û armanca xizmet kirin ji bo xelkê hebin, dê kêrhatî bûna wan bihête ret kirin û rêya çûn bo Parlemanê û noneratiya xelkê lê bihête berbest kirin. Heta evên ku ji parzînka rejîmê derbas dibin eger li Parlemanê de basekê li pêwendî tevî daxwazên gel de bînin holê û tekezê li ser mafên xelkê bikin, dikewine bin givaş û tomet û bê hurmetî pê kirinê û renge rêya girtin û hepsî kirin û nemaze cezayê ji vê tundtir jî ber wan bikeve.

Serbarê wê çendê jî, li rejîmeke wekî Komara Islamî de Parlemanê bi giştî nekariye bi qazanca xelkê û bo bi dest ve anîna daxwazên wan gavan bavêje û bi terzên cur bi cur rê jê hatiye girtin û deshilata wê hatiye berteng kirin û bi kurtî ne noner dikarin li kiryar de nonerê xelkê bin û ne Parleman dikare bi kiryar û bi vî awayê ku di welatên demokratîk de rolê xwe dibîne, bandor hebe.

**Çi asteng û girêpêçk li ser rêya hilbijartin û noneran û bi giştî Parlemanê heye ku rê nadin noner, nonerên rastîne xelkê bibin û Parleman di xizmeta daxwazên xelkê de be?**

Astenga sereke ji dîtin û ramanên rejîmê ve çavkaniyê digire, rejîm di vê baweriyê de ye ku xelkê agahî û têgihîştineke hewce çi ninin û qazanc û berjewendiyên xwe nas nakin, lewre dibe hejmarek ji Mela û li serweyî hemûyan Weliyê Feqîh bo wan bihizrin û biryaran bo wan bidin û xelk jî bi gotina wan biken û emr û destûrên wan rêve bibin. Lewma ji aliyekê pejirandina kêrhatî bûna berbijaran li destê Şêwra Nobedar de ye û Weliyê Feqîh jî mafê wê çendê heye ku li hatine pêşa her pirsgirêkekê, tevî Parlemanê dijberiyê biket, yan jî biryar û pejirandiyên vê hilbiweşîne. Serbarê wê çendê jî Civata Diyarî Kirina Berjewendiyên Nîzamê jî rolê xasmaniye xwe dilîze û li danana zagon û pejirandina zaf pirsan ji aliyê Parlemanê ve ku girêdayî bi daxwazên xelkê ve hebe, pêşgiriyê biket. Lewma hem hizr û ramanên rejîmê, hem hebûna Welayeta Feqîh, hem Şêwra Nobedar û hem jî Civata Diyarî Kirina Berjewendiyên Nîzamê hemû weke astengên sereke li ser rêya Parlemanê û li rastî de li serweyî Parlemanê ne û di rewşeke wiha de ne noner ku bila her kesek bin, dikarin bi rastî û di kiryar de berjenga hez û daxwazên xelkê bin û ne rê bi Parlemanê tê dayîn ku bi qazanca xelkê û bo bi dest ve anîna daxwazên wan zagonekê bipejirînin yan astengekê li ser rêya xelkê wêde bidin.

**Di hilbijartina gera 6'an a Parlemanê de xelk bi awayeke berbiçav pişkdarê hilbijartinê bûn, tu li ser wê bawerêyî ku vê carê jî yê her wisan be?**

Rewş û kawdana wan du hilbijartinane cudahiyeke zaf heye. Li hilbijartina gera 6'an a parlemanê de eger pişkeke berçave xelkê wê demê dizanîn Parleman û noner di bin deshilata Komara Islamî de çi rûmetek çi nabin, lê bi vî halî jî kesanek hebûn ku dizanîn heke pêkhata parlemanê bi qazanca baskê Reformxwaz yan kesayetiyên serbixwe tevav be, renge Xatemî bikare parek ji qewl û sozên ku dabûn, bi cih bîne. Lewre bi terzekî berbiçav di vê hilbijartinê de pişkdarî kirin û ev hêcete jî ji Xatemî standin. Lê niha piştî vê ku hate dîtin Meclîsa 6'an jî tevî vê ku piraniya nonerên vê yan ser bi baskê Reformxwaz in, yan serbixwe ne, dîsan jî ne her nekarî pêngaveke girîng bi qazanca xelkê û daxwazên wan bavêje, belkî

## Doma: Hevpeyvîna bi bireêz Hesen Şerefî

para kême qewl û sozên xatemî jî cî bi cî nebûn.

Bo hemû aliyekê eşkere bû ku eva di Komara Islamî de biryaran dide û dimeşîne, ne Parleman û nonerên xelkê ne, belkî Weliyê Feqîh û dezgeh û saziyên ne hilbijartî û sepandî ne û guhertina pêkhata Parleman û rayedarên dezgehên "îcrayî" (rêveber) çi tiştekê ji vê rastiya han naguher in û guherînekê bi qazancê xelkê pêk naîne, lewma ez bawer im kifş bûna zaftire wê rastiyê bi xasmanî bo wan kesên ku kêm û zêde hêviyek bi Xatemî û Reformxwazan hebûn niha bê hêvî bûne û hêcetek bo pişkdarî kirin di hilbijartinê de çi ninin û bêguman vê qasa pişkdarî kirina xelkê di vê hilbijartinê de bi awayeke berbiçav kêm bibe.

**De pêwendî tevî hilbijartinê de gelo te çi gotinek bo xelkê Kurdistanê heye?**

Gotina min bo xelkê Kurdistanê li berahiyê de bo evên ku di nava civatên xelkê de nasyar û xwedî hitbar in û xwe berbijar kirine eva ye ku xwe ji berbijariyê paşde bikişînin û kareke wisa nekin ku rejîm ji hitbara wan bo kişndina xelkê bo ser sindûqên dengdanê mifaha xerab werbigire. Piştre daxwazê ji xelkê Kurdistanê bi giştî dikim ku li çûn bo ser sindûqên dengdanê xwe biparêz in û rê nedin rejîm ji dengên wan û amade bûna ewan li ser sindûqên dengdanê mifaha xerab werbigire. Ji ber ku bo rejîmê ya girîng eve ye ku xelkekî zaf bo ser sindûqên dengdanê rabikêşe. Rêberên rejîmê bi eşkere dibêjin ku pişkdariya hindî zêdetire xelkê bo wan ji encama hilbijartinê girîngtir e, ew dizanin pêkhata Parlemanê her çawa be vê her di bin zêrevaniya wan de be. Lê pişkdariya xelkê li ber çavên bîr û ramana giştî, bi hesaba cih qahîm kirina xwe di nava xelkê de dihesibîne û dibe bi rejîmê re bihê nîşan dan ku li mêj dem e di nav gel û civatên xelkê de naverok û kakila pûçe vê çûye bin pirsyarê.

**Agirî:** Birêz Hesen Şerefî, bo pişkdariya te li vê hevpeyvînê de em gelek sipasiya te dikin.

**Hesen Şerefî:** Ez jî sipasiya ve dikim û serkeftinê ji bo we daxwaz dikim.

## Doma: Neyarên Federalîzmê li ser bingeha neteweyî û Coxrafî di Îraqê de kî ne?

Hatine rojeva pirsa Federaliyê li ser bingeha neteweyî û coxrafî di Îraqê de û pê çeqandina Kurdan di vî welatî de li ser vê awayê Federaliyê, dij kiryara welatên cîran û parek ji welatên Erebî li pey re bûye ku bi tundî dijî misoger bûna mafên neteweyiye Kurdan di wî welatî da ne. cihê hêbetê eve ye ku Tirkiye di çaxekê de dijberiya xwe tevî Federaliyê û misoger bûna mafê Kurdan di vî welatî de dike û gefa êrîşên Eskerî tîne rojevê ku ne wê helwestê bi destêwerdan li kar û barên Îraqê de dizane û ne jî eger hinde maf ji bo wan çend hezar Tirkên Qibrîsê bihên misoger kirin, razî dibe û wisa dizane ku dibe mafên zêdetir jêre bihê dayîn. Helwesteke wilo heger ji hizrekî kevneparêzî û Şovînîstî ve çavkaniyê nagire, dibe çi navekê li ser danên?

Eve jî li cihê xwe ku Tirkiye kevirê tekez kirina mafê hejmarekî kême Tirkên Qibrîsê li sîngê xwe didet, lê nek her mafê pitir ji 15 milyon Kurdên welatê xwe misoger naket, belkî haşayê ji hebûna wan jî diket.

Sûriye û welatên Erebî ku xwe bi piştîvanê xelkê Filistînê dizanin û cehda rizgariya wî gelî didin û bi mafê kêmtir ji serbixwe bûnê ji bo Filistîniyan razî nînin, çawa ye ku dema têne ser pirsa Kurd û misoger bûna mafên Kurdan li welatekî mîna Îraqê de, raman û hizra wan berevajî vê ye û Kurdan bi mafên xwe ve di çarçoveya vî welatî de tab nakin û rayedar û rêveberên wan bo welatên din yên neyarê Kurdan sefer dikin û pîlan û kompiloyên hevpar li dijî Federaliya Îraqê li ser bingeha neteweyî û coxrafî dadirêjin û pirsekî wiha rast û rewa bi tirs û xofek bo ser yekparçeyiya Îraqê dihesibînin?

Komara Islamî a Îranê li bingeh de ne her li Îranê de, belkî li welatên dinê de jî dijî Demokrasiyê ye. Bi helwesta dijî Federaliyê li ser bingeha neteweyî û coxrafî, hem dixwaze pêşiya ava bûna demokrasiyê li welatê cîranê xwe de bigire û nehêle Kurd di vî welatî de bi mafên neteweyiye xwe bigihîjin. Bi wî awayî di hundirê xwe de jî ji wêne zêdetir tevî pirsa Kurdan rû bi rû nebe û heta pêşiya ava bûna deshilatekê herêmî ya Şîyian li Başûrê Îraqê de jî bigire. Dizane heke ev devere bibe xwediyê deshilatekî herêmî, dê navendên Olî ye vê deverê û pêgeha rêveberên rejîmê û Ziyaretgehên Olî ên Îranê bibene bin sîbera xwe.

Heger eve helwest û merema welatên cîranê Îraqê be, hewce ye helwest û kiryarên Amerîka di wê derheqê de bi awayeke din be, ji ber ku Amerîka û hevalbendên wî wekî bi xwe dibêjin bi merema ***demokratîze kirina deverê*** û ***guhertina reng û rûyê siyisye Rojhilata Navîn*** êrîş kirine ser Îraqê û ji bo destve anîna vê meremê jî, Kurd li Îraqê bihêztirîn, serûbertirîn û rastbêjtirîn hevalbendên wan bûne û qet merem û ramanên xwe ji rizgar kirina Îraqê û cîgir kirina Federaliyê li ser bingeha neteweyî û coxrafî, ne ji wan û ne ji tu kesê din ne veşartine. Lewra rewaye ku Amerîka û hevalbendên wî li hemberî pîlan û kompiloyên welatên ne demokratîk û dijberî mafên Kurdan helwestekî kêrhatî ji xwe nîşan bidin û li ser hemû azadîxwazên cîhanê û pêş hemûyan hêzên Kurdistanî yên hemû parên Kurdistanê rewaye ku piştgiriyê ji daxwza rewa û berheqe Kurdan li Îraqê de bikin, ku daxwazkarê ***Îraqekî Demokratîk, Federalî li ser bingeha neteweyî û cografî û pir Partî bûnê*** ne û di wî warî de nabe gelê Kurd li Îraqê de bi tenê bimîne.

# Amerîka li dîv berjewendiyên xwe digere

**(Beşa.1)**

✍:M.Emîn

Mijara jorîn li deverê de, bi taybetî piştî êrîşa hevalbendan bi Serokatiya Amerîka bo ser hukûmeta Beis e Îraqê, bûye peyva ser zimanan û her kes û aliyek li gor berhevdan û dîtingeha Cîhanî ye xwe vê gotinê dubare diket.

Ev gotine di naverokê de rast e, lê hemû ev kesên ku vê pirsê tînin holê, yek merem û armanc nînin, belkî her yek ji wan li dîv merema xasmanî a xwe ketine û di vê navberê de renge yên wisa jî hebin ku wekî çavlêkeriyekê vê gotinê bêjin û bêy vê ku hizrekî baş ji kakila peyvê kiribin.

Merema vê nivîsê, bas li ser vê pênasînê ye û her wisa eyan kirin û bersiv dan bi vê pirsê ye ku: berjewendiya Amerîkayê di vê deverê da dijberî qazanca kîjan alî û hevpar li gel qazanca kîjan aliyê din de ye?

Di despêkê de hewce ye ku destê xwe bo vê rastiyê dirêj bikin ku Amerîka ne her niho, belkî di despêka ava bûna xwe ve li dîv qazanc û berjewenî ên xwe da bûye. Ku wisan e evên ku bi her meremekê vê gotinê dibêjin, bila wisa nezanin ku diyarokek nenaskirî kifş kirine û ji bilî wan aqilê kesek din nagihîje vê gotinê. Li dîv qazancê xwe de geryan yek ji xasmanî ên xwezayî a her rihberekê ye. Rakêşana xêr û xweşiyê û bi dûr xistina zirar û nexweşîiyê tevî domandina jiyanê têkel bûye, heyvan di nava dehan giya û şînikatiyan da, evên ku bo vê baş bin dihilbijêrît û dixot, yan di hemberî dujminê xwe da eger pê nekarî xwe wedişêre yan jî ji ber direwe. Mirov jî her li despêkê de heta niho her tim bi wî awayî riftar kiriye û diket, ji du haletan derkeve:

## 1. Berjewendiya xwe nas nekirbe:

Gelek caran wiha ye kesek bi sedema perwerde bûna şaş a malbatê, piropagendeya bihêze rê bizirker û fam nekirinê, vî curê ku hewceye qazancê xwe nas naket, lewma ne tenê bizavekê bo naket, belkî berewajiya vê hinek caran bo destve anîna meremekê bizavê diket ku li rastî de bi qazanca wî nine û bo zirara wî û qazanca aliyek din e. Îca eger hemû, yan piraniya herî zafe civakekê ji wan kesan pêk hatibe, ew civak nagihîje berjewendiyên xwe û vê li paşverûtiyê da bimîne. Qasê wan kes û civakane li derdorê me de hinde zaf in ku pêdivî bi mînak anînê naket.

## 2-Atîfe û evîn bi ser aqil û mantiq de hukim biket:

Di rewşek wiha de karîna hizir kirin û nirxandina rast û bi cih a bûyeran na mîne û di aqibetê da nikare qazanc û berjewendiya xwe fam biket. Ku wisan e, wekî di berahiyê de me bas kir her li despêkê de Amerîka li dîv berjewendiyên xwe da bûye , niho jî di vî warî de Amerîka her ev Amerîka ye û nehatiye guhertin, lê ewa ku guherîn bi ser da hatibe qazancên Amerîkayê ne.

Li heyamê du Enî bûna Cîhanê de ku Amerîka di rikeberiyeke tund û dijwar tevî Eniya Komonîstî bi Serokatiya Yekîtiya Soviyetê de bû, bo berfireh kirin û parastina deshilata xwe li Cîhanê de ew dewletên ku bin emrê vê de bûn – bê li berçav girtina çawaniya naverok û riftara wan rejîman tevî xelkê xwe - ev bihêz dikirin û diparastin, û ji hêla din ve dixebitî heta ku bikare dewletên bin emrê Yekîtiya Soviyetê lawaz û lerzok biket û di aqibetê de biherifîne û, deshilateke din bîne ser hukim û piştgiriyê jê biket ku bikare qazancên vî biparêzît. Di wî serdemî de her li devera Rojhilata Navîn em şahidê meşndina eşkereye vê siyasetê bûn. Ji aliyekê hukûmeta Pehlewî- ku yek ji hukûmetên sereke ye parêzerê qazancên Amerîka di vê dewerê da bû- ku dewletek dijî mirovî di Îranê de bû û xelkê xwe dipelçiqand. Gelên bindeste vê rejîmê ji hemû mafên destpêkiye xwe hatibûne bê par kirin, bi wî halî jî Amerîkayê bi tewawî ev rejîme li her terze xofekê diparast û bihêz dikir. Rejîma Paşatiya Pehlewî li Îranê de ne her cure hizir û ramaneke Komonîstî li hundirê Îranê de bi tundî tepeser dikir, belkî li hemî deverê de bi hewara wan hukûmetane ve diçû ku di wan de bizavên Komonîstî hatibûne holê û deshilata wan xistibûn nava xofê. Wekî tepeser kirina tevgera ***"Zufar"*** li Omanê di sala 1350'e Rojî de.

Her evê hukûmetê li salên 50'yan de demekê pêyê xwe ji berika xwe zêdetir dirêj dikir û bêhna vê hindê lê dihat ku çi din nikare parêzerê qazancên Amerîkayê be, piştgirî ji Xumeynî hate kirin û bi Artêşa guh li miste Şah daxuyand ku berevaniyê ji vê rejîmê neke û di aqibetê de me dît ev hukûmeta ku hemû dewletên deverê ji hêz û karîna leşkeriye vê ditirsiyan, çawan wekî girorka befrê heliya.

Li Efxanistana vê demê de jî rewşeke berevajî hate holê. Yekîtiya Soviyetê bi derba leşkerî hukûmetek Komonîstî di nava xelkê eşîretî û paşverû û Olî yê Efxanistana cîranê Îranê ava kir, her çend ku ev hukûmete bi bêrihî û mirî ji dayîk bû, ji ber ku serbarê ev hemû hevkariya Soviyetê bi vê deshilatê, lê xelkê bi tewawî qebûl ne bûn û ji xwe nedizanîn. Lewma heta dema herifîna vê jî, nekarî paytexta xwe (Kabul)ê biparêz e û tenahiyê pêk bîne. Amerîka jî kete alîkarî kirinan tevî neyarên vê hukûmetê ku vê demê bi Mucahidîn dihatin nav birin û bi çek û diraf û perwerde kirina wan, pişta wan digirt. Hetanî di aqibetê de karîn hukûmeta Komonîstî a dest çêkirê Soviyetê biherifînin û deshilatê bigirine destê xwe. Lê Mucahidîn jî ji ber ku gurûpeke Oliye tund rê bûn û nekarîn meremên Amerîkayê di wî welatî de – ku wekir in û gav hilgirtin ber bi demokrasiyê bû – destve bînin û Amerîkayê jî pişta wan berda û di bin piştgiriya rasterast ya Pakistana cîran de hêzeke nû bi navê ***"Taliban"*** derketin holê û deshilata kevneparêzî a xwe sepand in, ku aqibeta wan jî bo hemû aliyekê eşkere ye.

Evane hinek mînak in ji dehan nimûne ên dinê, ji wî terzê rikeberiya navbera eniyên mezine cîhanê di wî serdemî de. Rikeberiyek ku têde tenê hizr ji vê dihate kirin ku tayê teraziya hukûmetan di pêxema parastina qazancê xwe de, giran bikin. Bêy vê ku hesabekê jî bo xelkê dabinên, ku di bin zordariya wan hukûmetên sepandî hatibûne êxsîr kirin. Ev siyaseta Amerîka hetanî hilosîna Yekîtiya Soviyeta berê her dihate domandin.

"Pawil û Fouytz" cîgirê Wezîrê Parastin yê Amerîka û yek ji bername darêjerên navdar e pêk anîna guhertinan li Rojhilata Navîn, di hukûmeta Boş de di vê derheqê da dibêje.

1."Qonaxa şerê sar Amerîka neçar kiribû sexmeratî parastina qazancên xwe ji para zafe wan hukûmetên dîktatore Rojhilata Navîn piştgiriyê biket. Wan hukûmetane cî pêyeke civakî çi nebûn. Li hember vê piştgiriya siyasî-leşkerî, aborî a Amerîkayê de, neçar bûn xwe bi Amerîkayê ve hilawîsin. Êdî paşî herifîna Impiratoriya Soviyetê, Amerîka mecbûr nine pişta wan bigire".

2."Piştgirî a Amerîkayê ji wan cure hukûmetane, bi nirxekî giran li ser Amerîkayê xilas bûye, xelkê wan welatane Amerîka bi sedema rojreşiya jiyana xwe dizanin, lewre para zafe xelkê welatên Misilman jî bi

→

rijdî ketine dijberiya Amerîkayê. Ev tiştene bûne sedema pel avêtina kiryarên terorîstî li dijî Amerîka di nav ***Cîhana Islamî*** de. Bûyera 11'ê Septemberê li rastî de "Rêflêks"a vê kawdanê bû"

Piştî hiloşîna Yekîtiya Soviyeta dijminê herî girînge Amerîkayê, û nemana xof û dilkuteya ku ji pel avêtina deshilat û hizirmendiya Komonîzmê di cîhanê de, vê carê Amerîka vê li ser hemda xwe û bi dilfirehiyeke zêdetir ve dest avête peya kirina siyaseta nû a xwe li cîhan û bi xasmanî Rojhilata Navîn de. Ev siyasete tevî vê ku navê ***"nezma nû ya cîhanî",*** lê hate danîn, lê di rastî da ev siyasete çi guhertinek bi ser da nehat û bi serda jî nahêt, ji ber ku parastina qazanc û berjewendiyan di vî serdemî de jî her wek serdemê şerê sar, stratijiya Amerîkayê li xwe digire. Eva paşî şerê sar de guhertin bi ser da tê, taktîka Amerîka li guhertina dost û hevalbendên wî da ye ku wekî kilîlekê dergehê qazancên vê hêza yekane û mezin li cîhan û bi xasmanî li Rojhilata Navîn de diveket. Ji ber ku dostên berê yên Amerîkayê – hukûmetên dijî xelkî ên sepandî – bi herifîna Yekîtiya Soviyetê çi din rola wan nemaye û dibe tevî hevalbendên dine Amerîka ku li wî serdemî de dikarin qazancê Amerîka biparêz in, cihê wan tevî hev bihê guhertin. Hukûmeta Taliban li Efxanistanê, hukûmeta Melayan li Îranê û, hemû hukûmetên devera Girava Fars û gelek yên din jî ji vê awayê ne. Ev rewşa han ku rengdaneweya rastiyên dinyayê ye, carek din tîne bîra me ku li siyaseta cîhanî de "dostayetiyek hetanî dawiyê tuneye, belkî eva ku hetanî dawiyê heye, qazanc e".

Di xebat ji bo bi destve anîna berjewendiyên dem dirêj de, fakterek nû jî hatiye nav nirxandinên Amerîkayê, ev jî dijberî kirin tevî terorîzmê ye. Ji ber ku ev kiryarên terorîstî bi xasmanî di heyamê 25 salên dawî a sedsala derbas bûyî de li zaf cihên cîhanê bi dijî sazî û dezgeh û qazancên Amerîka meşiyan û êrîşên terorîstî bo ser ***Pentagon*** û ***New Yorkê*** li 11'ê Septembera 2001'ê de gupika wan kiryarên terorîstî bûn û Amerîka veciniqandin. Lêreda xofa terorîzmê gihîşte wî cihî ku bikare di nava mala xwe de û li mala xwe de jî li girîngtirîn cihên Amerîka derbeyek giran Jê biweşîne. Vê veciniqandinê Amerîka anî ser vê bawerê ku dibe terorîzm li her cihekê ku heye, berî vê ku carek din destê vê bigihîje nava mala Amerîka, ji hev belav biket û ji nav bibet.

Li gor vê nirxandinê, cehda Amerîkayê li dawiya şerê sar û di wî serdemî de eve ye ku hukûmetên serberedayî û dijî xelkî ji holê rake, bi ava kirina hukûmetên demokratîk li cihê evan de, dixebite da ku demokrasî pelan bavêje, ji ber ku:

**Yekem**, bi xwe sîstemek demokratîk e û bawerî bi demokrasiyê heye, her wekî çawan ku Komara Islamî li cehda geşandin û hinartina hizr û raman û awayê deshilatdariya xwe bo welatên Islamî bûye û heye û, yan Yekîtiya Soviyeta berê jî li deverê de li cehda geşandina îdeolojiya Komonîzmê û ava kirina wan dewletane de bû ku li ser bingeha vê îdeolojiyê hatibine ava kirin.

**Duyem**, di vî serdemî de demokrasî dikare qazanc û berjewendiyên vê hêza mezin biparêz e neku ya hukûmetên dîktator ku dibine sedema reh û rîşal dakutana wan hemû ne wekhevî ên ku xelkê ji bo kiryarên terorîstî, qaçax bûn û kiryarên xwekujiyê hay didet. Stirob Talbot, cîgirê wî demî yê Wezîrê Karê Derve yê Amerîka, di meha Novembera sala 1996'an di vê derheqê de wiha dibêje:

"Di dinyayekê de ku roj bo rojê zêdetir bi hevre tê girêdan, Amerîkayiyan pareke mezin di vê pirsê de hene ku welatên din çawan bi terzekî hezkirî yan ne hez kirî kar û barên xwe birêve bibin? Çi qas ji wan neteweyên ku bi awayekî demokratîk têne hilbijartin, zêde bin, Amerîkayî vê aramtir û bexteweranetir jiyanê bidomînin, ji ber ku egera girêdayî bûna demokrasiyan bi rêkevtinên navneteweyî zêdetir dibe û nahête bawer kirin ku ew li terorîzm yan têkdana jîngehê da pişkdariyê bikin, yan tevî hev û du bi şer bihên.

Pawil Fouytz jî di vê derheqê de dibêje: "Amerîka vê li şerê dijberî terorîzmê da, bi taybetî li Rojhilata Navîn de – vê bi siyaseteke nû ve bihê holê. ev jî siyaseta ***demokratîze kirina welatên Paşverû*** ye. Vê demê ku xelkê wan welatane û welatên Misilman bi çavên xwe bibînin, Amerîka alîkariya wan dike ku hukûmetên dîktator biherifînin û hukûmetên demokratîk yên dilxwaze xwe ava bikin, vê demê Misilman kerb û kînê ji Amerîkayê hilnagirin û vê bibine hevalê Dewletên Yekbûyî".

Serok Komarê Amerîka Corc.W.Boş her di vê pêwendiyê de li ser wê bawerê ye: "Cîhanê berjewendiyeke eşkere di belav bûna pirensîpên demokrasiyê de heye, ji ber ku welatên cihgirtî û azad hizra kuştinê na afirînin, belkî cehda vê didin ku li rêya aştiyê ve jiyaneke baştir bi afirînin".

Ev parek bûn ji gotinên rayedarên Amerîkayê ku bo mînak îşare pê hat kirin. Her wiha programa karê Amerîka li du welatên Efxanistan û Îraqê – ku paşverûtirîn hukûmetên serberedayî ên deverê tê de ava bibûn – li pêwendî tevî hiloşandina wan hukûmetane û cehd kirin ji bo pêk anîna hukûmeteke demî di her du welatan de ku ji nonerên aliyên cur bi cur ên xelkê wan welatane bin, û darîtina bingeheke nû ya wan li gor programekê ku li ser demokrasiyê hatibe ava kirina, gumanekê di vê da nahêl e ku Amerîka kar ji bo guhertina deshilata dîktatoran di Rojhilata Navîn de diket, lê merc nine ev guhertinane di wan hemû welatane de bi yek awayî û wekhev biçine pêş. Belkî tevî her yekê li gor rûber, pêkhat û çawaniya têkiliyên wan tevî Amerîkayê diçe pêş. Ulfuwîtz di wê derheqê de li ser vê bawerê ye ku her niha tevî du cure hukûmetên dîktator li Rojhilata Navîn de rû bi rû ne. Desteyek ji wan dîktator û tepeserkar in û ji bo domandina hukim û ragirtina deshilata xwe hewcehî bi Amerîkayê hene, hukûmetên wekî: Erebistana Seûdî û Misir. Desteyeke din jî ev hukûmetane ne ku her çend xisletê dijî demokratîkî hene, û dostên Amerîkayê jî nînin. Hukûmetên wekî Îraq, Sûriye, Lîbî û Îran. Amerîka dibe givaşê bêxe ser hukûmetên desteya yekem, hêdî hêdî rê jî bo demokratîze kirina wan xweş bike, lê hukûmetên desteya duyem, ji ber ku li dijî qazancên Amerîkayê ne, dibe bihêne hiloşandin, eger pêdivî kir, hêza leşkerî jî bi dijî wan bihê bi kar anîn.

Ceribandina guherîna her du hukûmetên Efxansitan û Îraqê jî wan rastiyan bo me diselimînin ku ev demokrasiya ku di wî welatî û renge piştî vê li welatên dine deverê de bihê peya kirin, demokrasiyeke rênimayîkirî di bin zêrevaniya Amerîkayê bi xwe da dibe. Bo vê çendê ku li sîbera demokrasiyê da û bi navê demokrasiyê careke din deshilata paşverû ên dijberî demokrasiyê per û balên xwe bi ser welat de nekêşin. Ji ber ku mixabin îmakana serhildana zêdexwazî û serberdayiyê bi sedema paşverû bûna wan civakane, zaf bihêz e.

Ceribandinek din jî her li ser wan welatan da eve ye ku li darêtina Xîmê hukûmetên nû ên wan deverane de berahiyê ji ava kirina deshilateke navendî a bihêz digire ku her demekê bixwaze, bikare bi bin pê kirina demokrasiyê mafên xelkê ji nav bibet. Li gor vê ceribandinê deshilat bi ser xelkê û hemû pêkhatên civakê de wekî: Netewe, ol û zimanên cuda-cuda de tê perwerde kirin, her aliyek li gor giraniya rewşa xwe di her warekê de, di deshilat de dibin hevpar. Renge bo vê meremê jî ava kirina hukûmetekê bi awayê Federalîzmê ku li ser bingeha neteweyî yan cuxrafiyayî pêk hatibe, projeyek bin ku niha li ber destê Amerîka de ye û mijûl in di Îraqê de cî bi cî dikin.

# Ketine gireva parek ji nonerên Meclîsê

: H.Ş

Piştî wê ku nêzî 8 hezar kesan berbijêriya xwe ji bo noneratiya Meclisa Şêwra Islamî ragehandin û di vê pêvendiyê de navên xwe nivîsandin, Şêwra Nobedar di heyamê çend rojan de kêrhatî bûna nîva wan ber endaman ret kir ku parek ji wan nonerên niho yên Meclîsê ne.

Ev kiryara Şêwra Nobedar dengvedanek berbiçav li raya giştî a xelkê cîhanê û di hundirê Îranê de hebûye û di vê derbarê de, Şêwra Nobedar ku ser bi baskê Parêzvan e, tevî lome û nerazî bûneke berfireh rû bi rû bû. Wezareta Hundirî û Parêzvanên ser bi baska bi nav reformxwaz eyan kirin ku hazir ninin hilbijartinekê bi rêve biben ku Şêwra Nobedar wisa bi berfirehî û netirsî desttêwerdanê tê de biket û kêrhatî bûna ber endaman heta vî qasî ret biket.

Di wê pêwendiyê de hejmarek ji nonerên nihoye Meclîsê ku kêrhatî bûna parek ji wan ji aliyê Şêwra Nobedar hatibû ret kirin, bi ketine gireva xwe di nav Meclîsê de nerazî bûna xwe ji vê kiryara Şêwra Nobedar eyan kirin.

Xatemî, Serok Komar û pêşengê baskê bi nav Reformxwaz weke hemû caran ji wan kesên nerazî û ketiye girevê xwast ku hêdî û li ser xwe bin û rê bidin ku ev tevî Şêwra Nobedar bi rêya zagon û dan û standinan vê pirsê çareser biket.

Di vê çendê de ku Şêwra Nobedar mîna fîltera Baskê Parêzvan dixebite û kêrhatî bûna ber endaman li gor qazanc û pîvanên vê baskê dinirxîne, tu şikek nine ku li mêj ve ye hewl dan ji bo kurt kirina destê vê Şêwrê di pejirandin yan ret kirina kêrhatî bûna berendaman di rojevê de ye, li vê çendê de ku helwesta micit û bi kiryare vê hejmarê ji Nonerên Meclîsê li cihê xwe de berheq û revaye û gavekî egîdane ye, lê bi wî halî jî ev girev girtin û micit bûna hejmarek ji Nonerên Meclîsê ên girev girtî nikarin cihê çend pirsyaran nebe. Bo mînak: Çawan e ev nonerên ku di heyamê pitir ji 3 salên rabihorî de ku Şêwra Nobedar bi taybetî Civata Diyrî Kirina Berjewendiyên Nîzamê, bi rewşekî berfireh û berbiçav di pejrandina gelek terh û layehe ên zagonî ku kêmek bêhna alîgirî kirin ji mafên xelkê û pêşî girtin yan berteng kirina deshilatên serweyî Meclîsê lê dihat, ragirt bûn, tu car gavek bi kiryar di vî warî de ji nonerên ku niho man girtine nehat dîtin! Lê niha ku ret kirina kêrhatî bûna wan hatiye holê, wisa bi qahîmî û micitî gavên nerazî bûna xwe bi kiryar davêjin. Paşan heke bi wî awayî ku Xamineyî xwestiye, kêrhatî bûna vê hejmarê ji nonerên Meclîsê bihête pejirandin, dîsan ev hejmare ji nonerên Meclîsê vê hazir bibin ku di pêwendî tevî ret kirina kêrhatî bûna pitir ji 3 hezar kesên din, vê girev girtina xwe bidomînin, yan di pêşerojê de li pêwendî tevî maf û azadiyên xelkê Îranê de, bizavek nerazî bûnê mîna nerazî bûna xwe nîşan bidin. Erê gelo eger wisa nebe xelkê maf çi nine ku vê pirsyarê ji xwe biket û seh bi wê rastiyê biket ku çima nonerên ser bi baskê bi nav Reformxwaz manewa wan li her qadek ji deshilatê de girîngtir e ji maf û berjewendiyên xelkê? Yan her niho cihê vê pirsyarê nine ku renge eve jî pîlan û dest çêkiriya rejîmê be û bo vê çendê ku di heyamê sê salên derbas bûyî de berdewam Meclîsa 6'ê ku piraniya vê ser bi baskê bi nav Reformxwaz e û li hember Weliyê Feqîh û Civata Diyarî kirina Berjewendiyên Nîzamê de paşekêşî kiriye û eve jî bûye sebeba vê çendê ku hitbara alîgirên ser bi baskê bi nav Reformxwaz kêm bibe û li tirsa pişikdar ne bûna xelkê di hilbijartinê de, gefan ji rejîmê û hindî zaftir xistine bin pirsyara rewa bûna vê diket, gazî û hawara xwe ji bo vê fendê biribe bo vê ku ev Meclîsa ku di heyamê pitir ji 3 salan de kareke berbiçav ji bo xelkê li dest ne hatiye, bi çend rojan bibe qehreman û Şêwra Nobedar neçar bibe paşekêşiyê biket û di vê rêyê de alîgirên wê baskê bi gavên bi kiryare vê hejmarê ji noneran careke din dilgerm bibin û bo pişikdarî kirin di hilbijartinê de hay bidet. Bi xasmanî di vê gera hilbijartina Meclîsê de pişikdariya xelkê di hilbijartinê de her wekî hatiye eyan kirin, ji bo rejîmê li encama vê girîngtir e.

Serbarê wê çendê, li pêşerojê de vê rastiyên pêwendîdar bi wê pirsê pitir zelal û xuya dibin û fend û fêlên rejîmê bi giştî û qîmet ne girtina xelkê ji aliyê baskê Reformxwaz ve, dê pitir eyan bibin.



Xwepêşandana Parlemanterên Îranê, seba betal kirina kêrhatî bûna parek ji wan

Li derweyî welat alîkariyên maliye xwe bo Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bidine wê hesaba bankî:

C.C.P PARIS 68040 M020
FRANCE

Fîşeya Bankiye xwe jî bo wê adrêsê Poste bikin:

A.F.K.B.P.102 75623
PARIS CEDEX 13
FRANCE

Hejmar Telefon û Fax bo têkilî kirin bi Radyo Dengê Kurdistana Îranê re:

**Telefon: 00871762280073**

**Fax: 00871762280074**

# Îran û hevalbendiya nû li dijî Federatîw kirina Îraqê

✍: Hesen Haşmiyan, Rojnamevanê Serbixwe

***Xwendevanên hêja, ev mijara jêrîn bi pênûsa Hesen Haşimiyan û di malpera "Îrani Êmroz" û bi zimanê Farsî hatiye weşandin, bi egera naveroka balkêşe wê, em deqa wergêrandiye vê pêşkêşî ve dikin:***

Renge di nêrîna yekem de em sedema herî giring a sefera Wezîrê Karê Derve yê Îranê bo Sûriyeyê pê çeqandin li ser vala kirina devera Rojhilata Navîn ji çekên tevkuj (terhek ku Sûriyeyê daye Rêxistina Neteweyên Yekbûyî) û bi berhingar bûna tev kiryarên Ariyel Şaron Serok Wezîrê Îsrayîlê bihesibînin, di cem wê pirsê, pirseke gelek girîng bo wan du welatên deverê û her wisan bo Tirkiyeyê heye ku ev jî pirsa Federalîzmê di Îraqê daye. Niho wa tê hizir kirin ku sê welatên Îran, Sûriye û Tirkiyê Federalî bûna sîstema siyasî a Îraqê ji çekên tevkuj ên Îsrayîlê û milhurî a Serok Wezîrê serhişke Îsrayîlê xeternaktir bûye.

Pirsa ku niha Kurd û Şîyî ên nêzîk bi Ayetula Sîstanî pê li ser diçeqînin Federalî kirina Îraqê ye. Ji dîtingeha Saziyên Kurd û bi taybet alîgirên Mesûd Barzanî ve, Federalî kirina Îraqê dibe destpêka her guherîneke siyasî di Îraqê de. Ev dibêjin ku di 13 salên rabihorî de me karî li jêr sîber û piştgiriya hêzên Amerîka de bibine xwediyê Azadiyeke navincî, Parlemaneke herêmî xwe re ava bikin û ji hemûyan girîngtir dewleteke Otonomî bo xwe pêk bînin. Lewma niha hewce nine ku ev paşde bizivirin û tiştekê qebûl bikin ku renge encama wê bi berevajiya çavnihêrî û armancên wan be. Ji dîtingeha Kurdan ve bajarê Kerkûkê evîngeha bav û kalên wan e û di parve kirina sîstema Federalî de dibe Kerkûk bikeve ser devera Kurdistanê.

Pirsek ku di hefteya derbas bûyî de bû sedema şer û levdanê di navbera Kurdan û Tirkman û Ereban di deverê de, û renge şer û levdanên wiha dîsan jî pêk bên. Niha di vî bajarî de gêre û kêşe li ser wê pirsê ye ku kîjan netewe ji neteweyên Îraqê piraniya xelkê vî bajarî pêk tîne, evê bibe xwediyê sereke yê wî bajarî. Kurd serhijmêriya niha ya wî bajêrî qebûl nakin û tenê li ser serhijmêriya sala 1975'an pê diçeqîne. Yanî wê demê ku hêşta koçberiya xelkê deverên din bo vî Bajarî nehatibû kirin. Tirikman îdiaya wê hindê dikin ku ev 75 ji sedê ye xulyaqeta niha a vî bajarî ji wane û wan serhijmêrî ên ku Erebê deverê didine xuya kirin xulyaqeta Tirikmanan 24 ji sedê hatiye texmîn kirin. Bi herifîna rejîma Sedam Husên, ji ber ku Kurd xwediyê rêxistinên ser û ber bûn, karîn pêla girûpên Kurd ên koçbar kirî bînine nav vî bajarî û di saziyên îdarî ên hukûmeta berê de akincî bikin. Di hinek biyavan de xaniyên wan kesên ku bi xulametiya rejîma berê dihatine gunehbar kirin, bi zorî dest bi ser de girtin. Niha bajarê Kerkûkê mîna embara mewada teqînê ye ku dikare Îraqê bi yekcarî biteqîne û di rewşeke wiha de federalîzmekî agirê vê embarê tê hesibandin. Renge li fêm kirina pirsek wiha be ku Îran, Sûriye û Tirkiyeyê vê rewşê pir aloz û xeternaktir ji vê dinirxînin ku tê dîtin. Ji aliyekî din ve Partiyên siyasî weke Konseya Bilind a Şoreşa Islamî ya Îraqê bi serokatiya Ebdul El Ezîz El Hekîm, Hewzeya Îlmiye a Berdevk bi serokatiya Muqteda Sedr, Civata berevanî ji Xelkê Îraqê bi serokatiya Mezher Dêylemî, Eniya Tirikmanên Îraqê bi serokatiya Farûq Ebdulla û Civata Mela ên Sunnî Ol bi tundî dijberî Federalî kirina Îraqê ne û daxwaza bi rêvebirina hilbijartineke zû di Îraqê de û derketina hêzên Amerîkayê ji welatê xwe dikin.

Wan girûpane tişteka hevpare din jî hene û ev jî eve ye ku tim wan bi awayên cur bi cur pêywendiyeke qahîm tevî her sê welatên Sûriye, Îran û Tirkiyeyê hene û ev yeke bi vê wateyê ye ku ev her sê welat dikarin bi pêkanîna hevgirtineke qahîm di navbera xwe de, hêzên dijberî sîstema Federalîzmê di Îraqê de bo aliyê merema xwe bikişînin, lê nabe em wisa bifikirin ku tewaya wan partiyên siyasî di îdeolojiyeke hevgirtî de li hev bicivin.

Ji bo partiyên tundrew ên Şîyî wek Konseya Bilind û Hewzeya Ilmiye a Berdevk a Muqteda Sedir, terz û lênêrîna siyasî, çandî ku niha di Başûrê Îraqê de xurt kirine dikare bibe modela normal a wan bo tewaya Îraqê. Niha di bajarên Başûrê Îraqê de Jin sexmeratî terzê kinc berkirinê bi tundî dikevine bin zext û givaşan. Peyrewên olên dinê wek Mesîhiyan malên xwe firotine û ji Başûrê Îraqê rewîn û nemane. Piraniya awahiyên dewletî li navbera du girûpên Konseya Bilind û Muqteda Sedir de hatine parve kirin û wergirtina her kesî di wan îdareyan de, pêka baweriyên olî û pêwendiyên eşîretî ye. Tevî vê ku tenahiyeke navincî di Başûrê Îraqê de heye, lê belê karê berhemanîna aboriyê di vê deverê de kêm heye û bêkarî û giraniyê xelk bêzar kiriye, lê di şûna vê de mizgeft û Husêyniye li vir gelek çeleng û pir mela ne û tu dibêjî ku qey çi bîr û baweriyek ji bilî Ol û Meseb di vê deverê de çinine. Di nav girûpên dijberî Federalîzmê di Îraqê de, Civata Berevanî ji Xelkê Îraqê ku Sûriye piştîvaniyê ji wan diket, û Eniya Tirikmanên Îraqê ku pêwendiyên nêzîk bi Tirkiyeyê re heye, li warê baweriyê ve bi tewahî tev partiyên tundrê ên Şîyî cudahî hene. Civata Berevanî ji Xelkê Îraqê alîgirê "laîsîte" a Firanse ye û dixwaze li cihê evê ku girûp û qewman bi bingeha mafpêdanê dabinêt, dixwaze her kite kesê Îraqî bêy berçav girtina vê yekê ku eva ser bi çi qewm an olekê ye, mafê siyasî, çandî, civakî û aborî ên wan bingeh bigire. Ev qet naxwazin baweriyeke girêdayî û tevxwaz a keseke wek Muqteda Sedir qebûl bikin, lê di heman demê de cehd û têkoşînê nakin ku li hemberî baweriyên vî de rabiwestin û rikeberiyê tev wan bikin. Eniya Tirkiman ên Îraqê tenê li warê dijberiya tevî terhê Kurdan bo ava kirina sîstemeke Federalî, bi girûpên navhatî dişibe. Ev di destpêkê de hebûna Kurdan di devera xwe de ji her tiştekê xeternaktir ji her tişteke din dizanin û bo xebata dijberî vê terhê dê penayê bo her karekê bibin. Her wisan ev lome û gazindeyên tund li Şêwra Hukûmeta Demî a Îraqê dikin û dibêjin Xanima SunGul ku di vê Şêwrê de nonera Tirikmanan e xwediyê rewa û berehqî a xelkê nine, lê tevî wan hemû dijberiyan zehmet e ku Kurd destan ji hizra ava kirina sîstema Federalîzmê bikişînin. Ji ber ku dibêjin eve mafê herî hindik e ku em daxwaz dikin.

Bo vê meremê, li destpêkê de dê Kurd tevî hilbijartinekî giştî li ser qebûl an ret kirina sîstema Federal di Îraqê de dijberiyê bikin, ji ber ku ev xatircem in ku xelkê



### Doma: Îran û hevalbendiya nû li dijî Federatîw kirina Îraqê

cihên din ên Îraqê ku hêşta li warê siyasî ve hinde têgihîştî ninin û bi başî wateya Federalîzmê nizanin, dengê xwe nadin vê sîstemê. Lê di qonaxa duyem de bo ava kirina pêkhatekê ji partiyên siyasî ên Kurd (PDK û YNK) dê cehd û têkoşînê bikin da ku bikarin parsengek xwedî hêz bin di pirsên nû ên siyasî di Îraqê de û siyaseta hêzên Amerîkayî di Îraqê de bêxine bin bandora xwe. Xuya dike ku ava Amerîkayê û Kurdan li cokekê de diçe û ev daxwazên Kurdan qebûl dikin. Ev pirsa pitir ji her mijarek din her sê dewletên Îran, Sûriye û Tirkiyeyê nigeran diket, lewma wan cehdên xwe ên dîplomatîk zêdetir kirine. Berî sefera Beşar El Esed bo Tirkiyeyê, Kemal Xerazî bi vî re hevdîtinê pêk tîne û Ebdulla Gul seferê bo Îranê dike. Hemû ev xebat û çalakiyene nîşaneya vê yekê ne ku ev dixwazin berî vê ku bibe dirnegî, dîwarekî qahîm li hember ava bûna sîstemeke Federalî di Îraqê de pêk bînin û bi hebûna hêzên dijberê Federalîzmê li hundirê Îraqê de, (her çende ku ev hêz wekhev ninin), lê bi yekîtiya welatên make ên dijberî vê pirsê, mirov dikare wan di eniyekê de dijî Federatîw kirina Îraqê bibîne.

Lê di navbera wan her sê welatan de hukûmeta Îranê dê ji hemûyan zûtir derbê bixot, ji ber ku sîstema Komara Islamî a Îranê çi demekê ne "Laîsîtê" qebûl diket û ne Federalîzmê, û ne jî bo nûjen û modern kirina nizama siyasî a xwe cehdê diket. Ev hukûmeta paşverû ku nikare tex û qatên têgihîştî û xwendevanan tab bike û tevî her terze nû bûnê li warê çandî, siyasî û civakî dijberî heye, heta eger sîstema Federalîzmê sîstemeke îdeal jî nebe û heta eger piraniya xelkê Îranê çi nasyariyek ji vê sîstemê çinebin, lê dîsan jî wisan xuya dibe ku ev sîstema siyasî bo xelkê Îranê gelek balkêş û pejirandî û ev yeka dê pirsa herî girîng a pêşroja Îraqê be.

# Bi hevhelwestiya neteweyî, pîlanên dujminan pûç dibin

✍:Erfan Rehnimûn

Hiloşîna rejîma dîktator û xwînrêj a Beis di Îraqê de û berbiçav bûna ***Kurd*** wek neteweyekê li ser axa xwe, û bandora haşahilnegire Bizava Neteweyî - Demokratîk a gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de li ser hiloşîna rejîmê û rola qedersaze neteweya Kurd li Piroseya Demokratîzasyonê di Îraqa nû de, bûne sedema vê çendê ku roj bo rojê tirs û nigeraniya welatên cîran ên Îraqê bi xasmanî hukûmetên zal bi ser Kurdistanê (Îran, Tirkiye û Sûriye)zortir be.

Her wisa bû sedema vê yekê ku ev welatên cîran gihîştina gelê Kurd bi mafên xwe, bi gefekê li ser xwe bihesibînin û pîlanan dijberî wî gelê mafxwaz darêjin. Heyamekê berî niho Xerazî Wezîrê Karê Derve yê Komara Islamî a Îranê gihîşte Dimeşqê û Beşar El Esed jî gihîşte bajarê Ankarayê û tevî rayedarên Tirkiyê derheq pirsa Îraqê û îmkana parve bûna vî welatî û tirsa ava kirina hukûmeteke Kurdî, guherîna bîr û rayan kirin. Her wek em hemû agehdar in, welatê Îraqê, Sûriyê, Tirkiye û Îran, berî hiloşîna rejîma Sedam Husên, her çaxê ku Bizava Neteweyî - Demokratîk a Gelê Kurd di her pareke Kurdistanê de hinde nema be ku mafê xwe destve bîne, gêre û kêşeyên di navbera xwe de didanine qeraxê û hemûyan pêkve cehd kirine ku berbend û astengan bêxine pêşiya gihîştin û nêzîk bûna bizava neteweyî a Kurd bi armancên xwe, û bi vî awayî li danîna her pîlaneke ne mirovî dijberî neteweya kurd, xebata rewa û berheq vê xemsarî nekiriye.

Em dikarin pîlanên hukûmeta zal bi ser Kurdistnê dijberî bizava rizgarîxwzane a kurd li du serdemên li hev cuda de şirove bikin.

## Serdemê şerê sar

Di serdemê şerê sar de her du Cemsera Sosyalîstî û Kapîtalîstî cehd dikirin ku deverên di bin deshilata xwe de pan û berfireh bikin. Yek ji wan deverên cîhanê ku ev du cemserene êxistibûne nava rikeberêyeke micit de, Rojhilata Navîn bû. cemsera Sosyalîstî cehd dikir bo dest pêre gihîştina bi ***Avên Germ ên Girava Fars*** û ***Behra Oman***, di vê deverê de rejîmeke serbixwe ava bike, li hember de Cemsera Kapîtalîstî cehd dikir ku piştîvaneke tenahiyê li hember maytê kirina Komonîzmê di vê deverê de pêk bîne. Welatên herî giring di Rojhilata Navîn de ku dikevtine ser vê piştîna (kembera) hêminahiyê, ev welatane bûn ku Kurdistan bi ser de hatibû parve kirin. Lewma di vê serdemê de bizava Neteweyî a Kurdan bi tewahî ketibû bin zext û givaşê, ji ber ku Cemsera Kapîtalîstî li warê leşkerî ve, ev welatane xwedî hêz dikirin, da ku ji rêya wan ve pêşiya maytê kirina Komonîzmê bo Rojhelata Navîn bigire. Welatên dagîrkere Kurdistanê jî bi dirêjahiya wan çend salane her çend li ser zaf pirsan gêre û kêşe tev hev hebûn lê li ser dijberî , tepeseriya bizava rizgarîxwaze Kurd di tewaya parên Kurdistanê de hevdeng û hevhelwest bûn. Îmze kirina Rêkevtinnameya Elcezayrê li navbera Îranê û Îraqê, di sala 1975'an mînakek berçav e ji çawaniya kiryarên şovînîstane a wan welatane, li pêwendî tevî Bizava Neteweyî - Demokratî a Kurdistanê de.

## Serdemê piştî şerê sar

Bi hiloşîna ***Dîwarê Berlînê*** û têkçûna Yekîtiya Sovyetê, hevkêşe ên siyasî guherîneke berçav bi xwe ve dîtin, û komek hevkêşe ên din, ta û baskên xwe bi ser pêywendiyên zal ên navneteweyî de kêşane. Bûyera ***11'ê Septemberê*** û ***ragehandina şerê dijberî terorê***, guherîneke kûr li hevkêşeyên siyasî ên Cîhanî de bi giştî û di Rojhilata Navîn de bi taybetî pêk anî. Piştî bi dawî hatina şerê sar, Rojava bi giştî û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê bi taybetî çi hewcehîyek bi piştîna hêmnahiyê a dijberî Komonîzmê nemane , heta welatên Îran û Îraqê êxistine nava tewera şer û tevdaniyê û welatê Sûriyeyê jî bi vê yekê hate gunehbar kirin ku dest li xwedî hêz kirina terorîzma navdewletî de heye û zext û givaş jî xistine ser Tirkiyê, da ku rêz û hurmetê ji mafên siyasî-kulturî ên kêmaniyên neteweyî bi taybet neteweya Kurd bigire. Piştî hiloşîna rejîma Beis di Îraqê de, rolê qedersaz a bizava Kurd wek paramêtreke xwedî bandor li piroseya demokratîzasyonê di Îraqê de, roj bo rojê zêdetir xwe selimand. Tewaya aliyên di nava bizava rizgarîxwazane a gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de, hevdeng daxwaza ava kirina Îraqeke Parlemanî-Federalî dikin û li ser vê yekê pê diçeqînin ku dibe Federalîzm di Îraqê de li ser bingeha Federalîzma Neteweyî – Erdingarî be û neteweya Kurd mafê biryardanê li ser dîyarî kirina çarenivîsa xwe hebe. Niha ku bizava neteweyî – demokratîk a Kurdistanê gaveke mezin bo destve anîna mafên neteweyî a gelê Kurd di Îraqê de hilgirtiye, welatên kevneperest ên Îran, Tirkiye û Sûriye ketine lerzê û du-du û sê-sê pêkve kom dibin û gelek bêşermane û

riyakarane daxwaza yekparçeyî a axa Îraqê dikin. Merema wan jî ji yekparçeyî a axa Îraqê, tepeseriya bizava neteweyî a Kurdistanê ye. Lê hukûmetên zal bi ser Kurdistanê de dibe baş bizanin ku sedsala 21'an, sedsala bi cîhanî bûna demokrasiyê ye û babelîskeke tund bo herifandina sîstema dîktatorî û serberedayî rabûye. Niha bizava neteweyî-demokratîk a neteweya Kurd di Rojhilata Navîn de yek ji lîstvanên herî kartêkere siyasî ye û neyarên gelê me dibe baş vê yekê bizanin ku nikarin vê carê şikestê bidine gelê Kurd. Her di vê demê de jî wezîfeyeke niştimanî dikeve ser milê tewaya hêz û aliyên demokrat û pêşkevtinxwaz ên Kurdistanê û hewce ye di vê qonaxa dijwar a dîroka neteweya me de, gelek serwextane û zîrekane bimeşin û bi hevdengî û hevgaviyê, pîlana hemû dujminên Kurd û tewawî wan rejîmên ku dijberî mafê rewa û berheq a gelan in, pûç bikin.

# Îran bo cara 17'an di civîna Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de hate şermezar kirin

**Amade kirina: Hejîr**

Di mehên bihorî de, sê pirs di warê pêpes kirina mafên mirovan li Îran a bin deshilata Komara Islamî de cihê baldanê bûn: Yekem, diyarî kirina Seîd Mortezewî, wekî "dadistan"ê Tehranê û Şoreşê ku di rapora birêz Kopîtorn, nûçegihanê taybetiye mafên mirovan li Îranê, daxwaz ji Komara Islamî hatibû kirin ku navbirî li ser şolê nehêlin.

Duyem, girtinên berfireh li Bizavên xwendevanan, ku bûye sedema girtina zêdetir ji 4 hezar kesan. Her wiha kuştina Zehra Kazimî Nûçegihan û Wênegirê Kanadayî bi regez Îranî ku tevî dij kiryarên berfirehe Cîhanî berhingar bû. Welatê Kanadayê çaxekê ku ji dadgehî kirina bikujên Zehra Kazimî ji aliyê Dadgeha Komara Islamî ve bê hêvî bû, hawara xwe bo Sazî û Binyatên Navneteweyî bir û pêşnivîsa biryarnameyekê li ser şermezar kirina hukûmeta Islamî a Îranê pêşkêşî Komîteya mafên mirovan ku ser bi Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ye û binkeya vê li Jinêv'ê ye, kir. Ev biryarnameye bi 73 dengên razî (erênî) û 49 dengên nerazî (neyênî) û 50 dengên bêalî hate pejirand in û bo derkirina biryara dawiyê, bi Civata Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî hate dayîn

Civîna giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî jî li roja duşemî 22'ê Decembera 2003'an biryarnama pêşniyaz kiriye Komîsyona sêyem a vê Rêxistinê bi 68 dengên razî û 54 dengên nerazî û 51 dengên bêalî pejrand. Hejî gotinê ye ku di heyamê 18 salên derbas bûyî de (ji bilî sala 2002'an) rejîma Komara Islamî a Îranê ji aliyê Koma Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve 17 caran bi egera bin pê kirina mafên mirovan di biyavên cur bi cur de, hatiye şermezar kirin. Mixabin heta niho jî derkirina wan cure biryarnameyan nebûye emrazek ji bo meşandina bendên Carnameya gerdûnî a Mafên Mirovan, yan jî pêşgirtin ji pêpes kirina wan mafane di Îranê de. Heta vê gavê jî çi terze girentiyeke rêvebiryê di vê derheqê de nebûye û tenê tiştekî sembolîk bûye. Komara Islamî a Îranê jî bi sedema vê rastiyê çi demekê pêngav ji bo baştir kirina mafên Mirovan di wî welatî de ne avêtiye. Eve jî di rewşekê de ye ku bi gotina Mihemed Elî Dadxah endamê Kanûna Parêzvanên Mafên Mirovan di Îranê de, her rejîmek ku bi bin pê kirina Mafên mirovan bihê gunehbar kirin, li gor benda 3'ye xala 19'ê a Peymana Navneteweyî, vê zêrevaniyeke navneteweyî ji bo meşandina Mafên Mirovan pêk bêt ku bi du terzan kar biket. Terzê yekem rapordan e û terzê duyem pêragihîştina qezayî e. Terzê rapordan bi wî awayî ye ku heke Standardên navneteweyî li warê mafên mirovan di welatekê de bi kêmaniya xwe gihîştibe, vî welatî wisan lê dikin ku bo berçav girtina wan Standardane gavan bavêje û heke dîsan jî vî welatî di vê derheqê de bin pê kirinên xwe dom kirin û di misoger kirina mafên mirovan de tu pêngav ne avêtibin, vê mifah ji metoda duyem bihê wergirtin.

Di metoda pêragihîştina qezayî de, welatek ku bi sedema bin pê kirin û pûte nedan bi mafên mirovan hatibe gunehbar kirin, vê lêpirsîn jê bihê kirin û komisyona Ewropayî a mafên Mirovan yan jî Dadgeha Ewropayî a Mafên Mirovan, li gor xala 25'an a konwansiyonê dikarin vî welatî mehkeme bikin û endamên peyrewkerên wan welatane jî mafê vê çendê hene ku derheq bi mafên xwe yên bin pê kirî dikarin şakî bibin û daxwaza mafên xwe bikin. Ji bilî evê ku Îran yek ji îmzekerên Peymannameya Navneteweyî a Mafên Medenî, siyasî, civakî û çandî ye, lê bi vî halî jî tu car bi vê metodê tevî Komara Islamî riftar nehatiye kirin. Mafên mirovan û azadiyên mirovahiyê bûne goriyê rêkevtinên siyasî ye rejîmê tevî hin ji welatên cîhanê û Komara Islamî bêy vê ku seh bi zext û givaşê bike, bê tirs û xof û bi hêsanî wan biryarnameyan bin pê dike.

Pejirandina biryarnameya vê dawiyê a Civîna Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî derheq şermezar kirina Komara Islamî, her qas ku tiştekî nû nine û her mîna berê li ser asteng kirina azadiyên civakî û siyasî ên hevwelatiyan pê diçeqîne û tekezê li ser nebûna azadiyên hizr û raman û ne wekheviyê derheq Jinan dike û her wiha bo cara yekemîn e ku daxwazê ji welatekê tê kirin ku "Dadsitan"eke serbixwe ji bo "Dadgusterî" a xwe dabinêt. Lê bi dîtin û nêrîna lêkolînvanan, rayedarên Komara Islamî bi baldan bi kawdana rejîmê li Rojhilata Navîn de, vê carê nikarin her wisa bi hêsanî çavên xwe ji biryara han bimiqînin, bi taybet ku Komara Islamî di heyamê çend salên bihorî de, li cehda xurt kirina têkiliyên xwe tevî Yekîtiya Ewropayê de bûye û niho jî ev yekîtiye yek ji wan aliyên sereke ye ku ev rejîme bi bin pê kirina mafên mirovan şermezar kiriye û hemû welatên girîng ên Ewropayê bo mînak Îngilistan, Firanse, Almaniya, Îtaliya û Holenda jî dengê erînî bi vê biryarnameyê dane.

Her çende ku biryarnameya vê dawiyê jî bi piraniyekî qasî (piraniyekî rêjeyî) hatiye pejirandin û 54 welatan bi sedema hevdengî tevî Komara Islamî dengê nerazî bûnê jê re dane, hewceye ku kom û Civatên Navneteweyî û welatên alîgirê mafên mirovan zêdetir ji vêne li hemberî bin pê kirina mafên mirovan li Îranê de bêdeng nebin û bi awayekî dadmendî tevî bin pê kirina mafên mirovan di Komara Islamî a Îranê de bilivlivin û vê rejîmê bibin bin pirsyarê.

# Ava kirina Partî û rêxistinan li gor kîjan pîvan û bi berçav girtina çi pirensîpekê?

:SorKêw

Yek ji bingehên civakeke Demokratîk yan wan civakên ku bo bi dest ve anîna demokrasiyê xebatê dikin, hebûna Partî û rêxistinên siyasî û sinfî ye. Bi gotineke din piloralîzm û bawerî bi demokrasî û civaka pirpartî, pîvana sereke û girîng e bo nirxandina vê civakê.

Li ber ronahiya wê ramanê ye ku PDK Îranê bi baweriyeke kûr bi demokrasî û piloralîzmê, pêşwaziyê ji pêk hatina her partî û rêxistinekê kiriye ku li meydana siyasiye Îran û Kurdistanê û di pêxema azadî û demokrasî û mafên gelê Kurd de xebatê bikin. Bêguman giringtirîn xasmaniya wan cure Partî û rêxistinane eve ye ku serhildayiyên vê civakê bin ku di vê de xebat û çalakiyan dimeşînin. Ji ber ku wiha rêxistinek tenê dikare eyankerê daxwazên vê civakê be û bi seh pê kirina rastiyan û cur bi curiya qonaxan roleke erênî û baş bilîz e. Lê rêxistinek ku ji aliyê partî yan rêxistineke din û li derve bi meremeke taybetî û bi xasmanî meremeke bertenge demî, û ne di pêxema qazanc û berjewendiya gelê Kurd û mafên wî di vê para Kurdistanê de pêk hatibe, ne tenê nikare roleke erênî û pozetîv hebe, belkî dê raste rast ziyanê bigehîne bizava vê pişka Kurdistanê, û dikare bi awayeke ne rastewxwe jî li xizmeta armancên dijminan de be. Pirsek ku mixabin dijminên neteweya Kurd bi giştî, jê ne xapiye û eva yek ji dehan pîlan û fend û fêlan bûye ku dijberî tevgera parek ji Kurdistanê bi kar aniye.

Hilkevta coxrafî û par-par bûna Kurdistanê bi ser çar welatan de û zilm û zordariya ku li neteweya me hatiye kirin û hebûna xebat û bizavên di wan parane de, hewcehiya pê çeqandin û li berçav girtina hinek pirensîpan li nava hêzên siyasiye pişkdar di wan bizavane de aniye holê. Pirensîpên herî girîng li berçav girtina xasmaniyên her yek ji parçe yan bi baldan bi rewşa siyasî, aborî, civakî, çandî û ... ye wan parçane û destêwerdana hêzên siyasiye parekê li bizava parên dinê da ye. Eve pirensîpeke ku piştî tê hizrîneke kûr û berfireh û li berçav girtina komek fakterên navxweyî û derveyî û bixasmanî fakterên deverî, hatiye berçav girtin. Pirensîpek ku mixabin bi egera li berçav ne girtina vê ji aliyê PKK'a berê ve bûye sedema lêketina ziyan û zirareke zaf, bi xasmanî li Kurdistana Îraqê piştî serhildana mezin a sala 1991'ê, hem bo xelkê Kurdistana Îraqê û hem ji bo PKK'ê bi xwe. Destêwerdana Tirkiyê li kar û barê navxwe ya Kurdistana Îraqê belgeyek bihêz e wan cure ziyanane ye.

Eve heyameke ku nûçeya pêk hatina bi nav partiyeke nû bo Kurdistana Îranê li jêr navê ***Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê*** (PJAK) hatiye ragehandin. Li dîtingeha bawerî bi demokrasî û piloralîzmê, pêk hatina partî û rêxistin bo Kurdistana me cihê kêfxweşî û pêşwazî kirinê ye. Lê zehmete ku bo me şik û guman çê nebe û hinek pirsyar bo me dernakevin holê. Demekê ku em bala xwe didine daxuyaniya ava bûna vê partiyê û ji hinek nîşaneyên din jî, bo me eyan dibe ku li dirêjiya destêwerdanên PKK'e ya berê, ev partiye jî destçêkiriyê wan e û siyasetên vê kopiyek ji siyasetên partiya dayîk.

Berî ava bûna wê partiyê jî, PKK'ê çi vê dema ku navê xwe neguherî bû, û çi piştî guherîna navê xwe jî, bi anîne zimana hinek daxwazên wekî: Daxwaziya Komara Islamî ya Demokratîk bo Îranê û bilind kirina dirûşmên cur bi cur bo parên din ên Kurdistanê, bextê xwe ceribandiye û heta hilwerîna alîgirên serkêşe xwe jî ceriband û bi xasmanî piştî wan guherînên berdewam ku bi ser nav û siyasetên vê de hatin, êdî nedibû vê ceribandinê du carkî biket û destêwerdanê li kar û barê tevgera parên din ên Kurdistanê de biket.

Şik li vê hindê de nine ku her wekî di dema derbas bûyî de civatên xelkê bi giştî û rewşenbîr û ciwanan bi taybetî, bi hişyariyeke tewaw ve tevî pirseke han riftar kirine, dê dîsan jî her bi vî awayî riftarê bikin û ceribînên derbas bûyî li berçav bigirin.

## Doma: Hin destkevtên Demokratîk û bajêrvanî ên Komara Kurdistanê

Destkevtên dine Komara Kurdistanê ku remza pênasîna neteweya Kurd nîşanî cîhanê da û bûye sedema xurt bûna hêz û îrade û seha neteweyî û serbilindiya gelê Kurd, hildana ala sê renge ***(Sor, Sipî û Kesk)*** Kurdistanê bû, ku tava rojê di orta vê de mizginiya serkevtinê dida gelê Kurd û di nava mejî û dilê her Kurdekê de çeqiya bû û bi tundî pêl vedida û bûye destkevtek neteweyî û dîrokî bo gelê Kurd li her çar parçeyên Kurdistanê.

Pêk anîna hevalbendî tevî hukûmeta Azerbaycan û gelê Azerî, bûye sedemê taybet û biratiya du gelên Kurd û Azerî.

Ava kirina hêla bazirganiyê di navbera Kurdistan û Azerbaycana Soviyetistanê ji bo baştir kirina rewşa xirab ya aborî û pêşve çûna jiyana xelkê Kurdistanê.

Her wisan ava kirina hêza leşkerî a Pêşmerge ên Kurdistanê û bi nav kirina çekdarên Kurd bi navê pîroze Pêşmerge, ku şanaziyek herî berçave vê komarê ye û li dirêjiya xebata azadîxwaziya gelê Kurd de navê Pêşmerge bûye dilhebîn û cesareta her xebatkareke Kurdistanê. Bi xasmanî niha ku ev nave li sînorên Kurdistanê derbas bûye û pênaseyeke navneteweyî bo xwe misoger kiriye.

Dema mirov bala xwe dide berhemên dîroknivîs û nivîskar û ev kesên ku serpêhatiyên xwe li ser Komara Kurdistanê nivîsandine, xuya dike ku li Komara Kurdistanê de azadiya siyasî bi tewawî hatibû misoger kirin û tu kes bi sedema hizr û nêrînên siyasî nehatibû bin çav kirin, hepsî, îşkence û îdam kirin. Tenahî û rihetiya gel misoger bibû û can û malê xelkê dihat parastin.

Bi giştî Komara Kurdistanê ligel hinek arîşe û pirsgirêkên kûr û mezine hundirî û derveyî rû bi rû bû, ku weke rêzokekê dora dest û pêyên wê aliyabûn. Di qadê hundir de, ne xwende, belengazî û feqîrî, lewaz bûna bingeha aboriya Komarê, pêkhata Eşîre bûna civaka Kurdewarî yê, berteng bûna sînorên deshilatê, kêm ezmûnî û ceribîna rayedarên Komarê û her wisan li qadê dereve de, şerê berdewam tevî hukûmeta navendî ya Îranê, hisara aborî, propagendeya xirab û tund, givaşa Rûsiye û hukûmeta Azerbaycanê û dijberiya welatên Rojavayî, bûne sedema wê çendê ku Komara Kurdistanê bi armancên mezin û paqij û Kurdaneye xwe negehîşt. Lê serbarê wî halî jî ev xizmetên ku li heyamê 11 meh ji temenê kême xwe de pêşkêşî xelkê Kurdistanê kirin û bi xasmanî destkevtên medenî û demokratîke ku heta-hetaye bûne çirayê roniya rêya xebata neteweya Kurd û Gelên Îranê.

*Jêder:*

*1."40 sal xebat di pêxema Azadiyê" de, Dr. Ebdulrehman Qasimlo*

*2.Cimhûriyetî Kurdistan", Mehmûd Mela Ezet*

# Kurdistana Biçûk

:M.Roje

**Avirek li ser Kurdên Başûrê Xurasanê!**

Îran welateke hevpar yê gelên Îranê ye. Bêguman diyar e ku xîma bingehîn ya Îranê ji aliyê Kurdan ve hatiye danîn. Gelê me damezrînerê Îranê ye. Îran jî melbenda sereke ya çand û bajêrvanî ya gelên Îranê ye. Bêşik gelê me di vê ocaxa kulturî de para xwe ya herî zêde heye.

Di Îranê de ji bilî Kurdistana me ya eslî, me Kurdistanekî din jî heye. Dibe ku hûn bi vî navî ser sam bimînin! Lê ne cihê ser samiyê ye, çunkî parek ji miletê me berî 400 salan, koçberî diyarê Xurasanê bûne. Hinek kes di vê baweriyê dane ku berî vî demî Kurd li Xurasanê hebûne, Ji bo nimûne çavkaniyên dîrokî ya Erebê-Îranî gelek caran basa Ebû Muslimê Kurd dikin. Ango Ebû Muslimê Xurasanî di reh û rîşala xwe de Kurd bûye. Niha Armanc ne eve ku lêre de em rast bûn yan ne rast bûna vê mijarê derxin zanebûnê, armanca me eve ku vê rastiyê bizanibin ku berî 400 salan jî di navbera Kurdan û Xurasanê de têkilî hebûne. Bêguman çavkaniyekî girîng wek ***"Şahname"*** jî bi xwe belgeyekî vê rastiyê ye.

**Kurdên Xurasanê û dîrok**

Gelo hûn dizanin ku li Xurasanê Kurd hene? Yan gelo hûn dizanin ku li Bakûrê Kurdistanê li welayeta Erzirûmê di kêleka navçe yên Xins û Malazgirdê de, bajarekî kevnar heye bi navê: ***Xurasan***! Lêre de ezê wan du pirsan bi hevre bidirûm û encamekî bixime dest! Tişta balkêş di vêderê de eve ku gelek Kurdên Erzirûm û Dêrsim û heta Maraşê dibêjin em ji Xurasana Îranê hatine. Ya gelek balkêştir eve ku Kurdên Bakûrê Xurasanê jî dibêjin em ji Dêrsim û Erzirûmê û . . . hatine. Niha kîjan rast e û kîjan şaş e? babetekî gelek aloz e û pêwîstiya xwe bi lêkolîn û dahûrandineke têr û tejî heye. Eyan e ev gotare nikare ku meremekî wisa bîne cî, lê bi kurtahî mirov dikare bibêje hin li Kurdên Erzirûmê, Dêrsimê û cihên din ên Kurdistanê bi rastî ji Xurasanê wegeriyane Kurdistanê, yan piraniya Kurdên Xurasanê ji Kurdistanê çûne Xurasanê.

Derheq çawaniya koçber bûna Kurdan ber bi Xurasanê gelek nêrînên cuda–cuda hene, lê a sereke ewe ku dibêje Kurdên Xurasanê ji aliyê Padîşahên Sefewî ve hatine sirgûn kirin. Lê li gor hin lêkolînên din nêrînek cuda derdikeve holê. Li gor vê nêrînê Kurdên Xurasanê nehatine sirgûn kirin, belkî tam berevajî, ewane bi xwesteka xwe û ji bo çareseriya arîşeyên jiyanê û bo parastina sînorên deshilata pîroz – li gor vê demê – li çend qonax û herêmên cuda cuda de hatine han dan ku biçin bo Xurasanê. Diyare ev Kurdana di warê Olî û mezhebî ve Şîyî ne û bi zor jî nehatine Şîyîze kirin. Li destpêkê de piraniya wan Elewî bûne û bi giştî serbazên Şah Simayîlê Sefewî bûne. Piştî ku di şerê ***Çaldiran***ê de (1514), Sultan Selîm serkeft û Şah Simayîl şikestxwar, vê yekê di demografî ya gelê Kurdistanê de parçe bûn çê kir.

Elewîtî bi xwe Îslamekî Îranî û hinekî jî Kurdîze kirî ye. Çunkî li gor mentalîte û dînamîzmên kulturî – civakî ya Kurd û Îraniyan ve hatiye eyar kirin. Di bingeh de îdeolojî ya Şîyîtî li hember Sunîtî ya Osmaniyan xwe teorîze kir. Wekî tê gotin, îdeolojiyek bû, bona parastina taybetmendî yên Îranê. Bi vî halî di vî şerê dînî de gelê Kurd bû du parçe, wek hemû gelên din. Elewî Oliyan tevî piraniya Sunniyan aliyê Sultan Selîm girtin û aliyek jî bûne Şîyî û tayê Şah Simayîl û Sefewiyan girtin. Ji ber vê heta niha jî Kurdên Erzirûm, Dêrsim û Maraşê Elewî mane û li ber xwe didin. Ên mayî bi Simayîl re wegeriyane Îranê. Di navbera wan û Padîşahên Sefewî de Jin û Jinxwazî peyda bû û bi salan wek Derwêş û serbazên biwefa yên Sefewî şer kirin. Li dema deshilatdariya Şah Ebas û bi hatina Alîmên Şîyî ji Lubnan û Îraqê ber bi Îranê, bi fermî Elewîtî li Îranê hate rakirin û Şîyîtî ya Dwazdeh Îmamî dewsa vê girt. Kurdên Xurasanê jî Elewîtî guhertin û bûne Şîyî.

Dema Îran ji aliyê Rojava ve di bin metirsiya dewleta Sunî de bû, ji nişkave xetera Dewleteke Sunî di Rojhilatê Îranê de peyda bû, Ozbekên Sunî weke Eniya Rojhilat destek dane eniya Rojava ango Osmanî. Vî demî di qonax û herêmên cuda cuda da bi handana Şahên Sefewî Kurdên me bona berevanî kirin ji sînorên Îranê bi dilxwaz çûne Xurasanê û ev devere parastin. Şahên Sefewî jî qelemrewa vê herêmê bexşîne wan. Dastana koçberiya Kurdên Xurasanê wisa bûye.

**Kurdên Xurasanê û demografiya**

Kurdistana biçûk ji 8 bajaran pêk hatiye: Bicnûrd, Şîrwan, Qûçan, Îsferyîn, Çinaron, Layîn, Deregez û Mirawe Tepe. Nifûsa wan Kurdane nêzîk 2 milyonan dibe. Navenda nerîtî û îdarî ya herêmê bajarê Qûçan e. Di warê aborî de beşa çandin û pezdarî hakîm e û pîşeya sereke ya Kurdan Pezdarî ye. Lê piştî hatina gundiyan bo bajêr senetekî (pîşe) biçûk pêk hatiye û beşa xizmetan li bajêran pêşketî ye.

Di warê dînî de Misilman in û peyrewên Şîyî ya Dwazdeh Îmamî ne. her weha di warê devok û dîlekt de hemû bi Kurmancî a Bakûr daxivin. Devoka Kurmancî ya Xurasanê li devoka Kurdên Maraşê nêzîk e û heta mirov dikare bêje yek in. Di nav wan de du devok hene, yekem devoka bajêr û gundan e ku dişibe devoka Maraş û Melatiyê. Devoka din a Kurdên koçer dişibe devoka Erzirûmê.

Her wiha li vêderê ji bilî Fulklura gelek zengîn, wêjeyekî nivîskî jî heye. Bi dehan helbestvanên me ên kilasîk hene ku pêşenga wan ***Cefer Qulî Zingilî*** e. Îro jî tevgerek kulturî – wêjeyî dest pê kiriye û çendîn kom û komeleyên kulturî û wêjeyî hatine ava kirin. Bo nimûne li Şîrwan, Quçan û Meşhedê encûmenên wêjeyî hene. Li Qûçanê heftînameya ***AWAYÊ QÛÇAN*** çap dibe ku Kurdî – Farsî ye. Her weha Mehnameya ***KURMANC*** çap dibe û xwendevanên Zanîngeha Meşhedê Jî Kovareke Kurmancî bi navê ***DENGÊ KURMANC*** derdixin, ji bilî çendîn pirtûk û dîwan û lêkolînên din ku car û bar çap dibin.

Îro hişyariya xurt ya neteweyî peyda bûye û her roj bêhtir berfireh dibe. Lê di kêleka vê hişyariyê de jî polîtîkayên helandin û tune kirinê jî dimeşin. Bi awayekê ku êdî bi fermî axaftin bûye nirxekî civakî û ev nifşê nû piranî bi Farsî dipeyvin heta Kurdî. Niha eva metirsiyekê dixulqîne ku pêwîst e bête nasîn û çareser kirin. Her wiha ji ber bêkarî û bê asoyî, piraniya gundên Kurdistana Biçûk hatine vala kirin û ev bi giştî koçberî Tehran, Meşhed û … bûne. Vê yekê jî rewşekî demogrefîk ya nû aniye holê.

**Kurdên Xurasanê û tevgera Kurdistanê**

Weke me got îro hişyariyekî berfirehe neteweyî li Kurdistanê dest pêkiriye. Di kêleka vê hişyar bûnê de tevgerek kulturî-wêjeyî dest pê bûye. Bi giştî nifûs pitir bûye. Li Kurdistanê bajêrvanî pêş ketiye û evê jî bi xwe re asta xwendinê pêş xistiye û di encam de qatên civakî ên nû peyda bûne wek xwendekar û rewşenbîran. Niha vê guhertinê bi xwe potansyelekî xurt afirandiye, ku ber bi teyar bûnê ve diçe. Ev potansyel li şekil û qalibekî siyasî digere. Demek PKK (ya berê) hinek ji vê potansyelê bi kar anî û bi rast pê lîstin. Çunkî ev yeka dikare vê rêrewê çewaşe bike û nehêle ku rêk û rêçika rasteqîne ya xwe bigire. Lê bi giştî potansyel gelek xurt û tezeye û hêşta şekil nestandiye. Tu çawan bixwezî, dikarî şekil bidiyê.

**Kurdên Xurasanê: Encam û çareseriyek**

Wekî me got ew dever, Kurdistana biçûk e. Xurasan û Kurdên vê jî di coxrafiya Îranê de ne. Bêguman ev devera ji bona tevgera rizgarîxwaz a gelê Kurd di Rojhilatê Kurdistanê de herêmekî yedek e û gerek were xebitandin. Ev heq jî a tevgera rizgarîxwazî ya Kurdan li Îranê ye, ne ya parên dine. Bêguman baweriya me bi yekîtiya neteweyî heye û çarenivîsa hemû Kurdan yek e, ji ber vê çareser kirina pirsgirêka Kurd di Îranê de li Tehranê ye, ne ciheke din. Ji ber vê pêwîst e rêberatiya siyasî ya Kurdistana Rojhilat avirekê bide ser vê deverê û di rêkxistin, ragihandin û rêveberî ya xwe de, jêre bername û projeyan dayne.

# Kilîston serok komarê Austriya evîndarê Welayeta Feqîh û hogirê rejîma Îranê

:Bavê Hejar
hejar@yahoo.com


Xatemî, Kilîston û Xameneyî

Di despêka Rêbendana îsal de serok-komarê Austriya (Otrîş) **Kilîston** di gel mezintirîn delegasyona bazirganî û siyasiya wê welatî serdana Îranê kirin. Di vê serdana *dîrokî* de, serok komarê Austriya digel rêveberê Olî ye Komara Islamiye Îranê ayatollah Xamineyî, Serok komarê Islamiye Îranê Xatamî û serokê şêwra Mesleheta Komara Islamî Ali Akbar Refsencanî hevdîtin kir. Tevî wana serokê Austirya serdana gelek cîhên Îranê kir û pêşkevtinên Îranê di warê *demokrasî, mafê mirov û abûrî* de bi başî nirxand !!

Di hevdîtin di gel Xameneyî de, dîktatorê Îranê siyaset û sîstema hilbijartina Komara Islamî bo serokê Austiryayê rohn kir û da xuya kirin ku hemû karbidestên komara Islamî li Ayetollah bi xwe bigre hetanî şêwra parêzera (Şêwra Nobedar)bi awayek demokratîk tên hilbijartin û eger *milletê* Îranê nexwaze vê ew karbidestene dest li kar hilbikêşin. Di pêwendî li gel aloziyên navbera perlemana nihaye Îranê (meclîsa 6.) û Şêwra Nobedar de ev pêvajûye bi piroseyek demokratîk hate nîşandan ku her aliyek mafê xwe yê yasayî bikar tîne. Lewma hukûmeta Komara Islamî hikûmetek *bi rastî geleriye*.

Ew rexneyên ku dewletên Ewropî, Welatên Yekgirtiye Emerîka û rêxistinên mafên mirovan li Îranê digirin, jî ber nenasîna sîstema Îranê û dijmindariya wana li gel Îranê hatin nirxandin. Wî got li temenê 25 saliye komara Islamî de 23 hilbijartinên demokratîk hatine encam dan, ku têde xelkê Îranê bi azadî!!! Mafê dengdana xwe bikar anîne.

## Demokrasî û Komara Islamî

Li hember pirsyara serokê Austirya derbarê pêwendiya demokrasiyê û Îslamê de Xameneyî dibêje Komara Islamî û bihayên Islamiye wê rejîmê tu dijberiyek tevî demokrasî û mafê hilbijartina mirov nine. Komra Islamiye Îranê bi gotina dîktatorê Îranê di gel parastina bihayên Islamî hêza hilbijartinê daye mirovan û ewa jî ezmûnek nûye li Cîhanê de.

Weke tê xuyanî kirin, gotinên Xameneyî bo serok-komar Kilîston pir mifah dibe, lewma ew digel sipasiya rêberê *musilmanê cîhanê!!* dide diyar kirin ku ayîna Islam û metoda hukûmdariya Komara Islamîye Îranê her tim bo wî cîhê balkêşiyê bûye. Ew wê hevdîtina di gel rêberê Komara Islamî bi giring tirîn hevdîtin bi xwe dide pêzanîn û dibêje gelek têniyê hevdîtina rêberê Îranê bûye. Bo nîşandana merema xêre xwe dibêje di vê seferê de mezintirîn şanda bazrganî li dîroka Asutiryayê di gel min hatiye.

Di hevdiîtin digel Xatemî û Refsencanî de jî, digel mesela Filistîn, Îraq û basên pêwendî ên *serbixweye* Austirya di gel Îranê û ewa hate daxuyani kirin ku welatê Kilîston komara Islamî bi navenda şer' û têkdanê nizane û belkî Îran welateke ku, hogirê aşitî û tenahiyê ye.

## Hevkariyên aborî

Hevdem di gel serdana serokê Asutiryayê bo Îranê pêşangeha mezine aboriye Îran – Asutirya hat vekirin ku tê de mezintirin heyeata aboriye Austirya digel pirêzîdênt Kilîston beşdarî kirin. Di wê pêşangehê de serokê Austriya Îran wek welatek giring û şirîkê stiratêjiye aboriya welatê xwe da xuyanî kirin, ku pêwendiyên wan du welatane bingehên dîrokî hene. Tevî wana biryare li demek kurt de sentera sermayeguzariya Îranê bo derevey welat li serbajêrê Austirya Wiyênê bêt damezrandin û bi wî awayî pêwendiyên her dû welatan vê bigehe astek bilindtir.

## Bazirganî bi nirxa canê serokê Kurdan

Serdana serok komarê Austria bo Îranê hevdem di gel aloziyên nav rejîma komara Islami bo hilbijartina Meclîsa şêwra Islamî û herwisa berêkaniya navxweyiye desthelatdarên wê rejîme di çend aliyan de cîhê balkêşanê ye:

*Komrara Islamiya Îranê di meha Sermaweza sala 2003'an de li aliyê Netewên Yekgirtî bi sedema bin pê kirina mafên mirovan, zîndan, eşkence û îdamên bê mehkeme û pêpes kirina mafên kêmahiyên olî û etnîkî hate şermezar kirin. Li gor raporên rêxistinên mafên mirovan di sala 2002'an da zêdeyî 420 kes li Îranê hatin îdam kirin. Di hevdîtna serok komarê Austirya de ne bi awayê nepenî û ne jî bi awayê eşkera basek li wê meselê berçav nakeve. Cîhê têramanê ye, ku çawa welatek demokratîk û Endamê Civata Ewropa (EU) bê amaje kirin bi wê rastiyê hevdîtinên xwe bi awayek wiha berfireh li Îranê de dişopîne. Xasmayî ku serokê pêwendiyên dereveye EU'yê Xawyer Solano li despêka meha Befranbarê de da xuyanî kirin: Eger Îran rewşa xwe neguhere, Ewropa wê hevdîtinên *"sazinde"* ligel Îranê bi dawî bîne.

*Komara Islamî li astengek mezine siyasî û bê meşrûiyetiya yasayî de dijî. Di hember nîgeraniya rêxistinên mafên mirovan, Civata Ewropa, xwendkar û xelkên Îranê derbarê rewşa niha ye hakim li ser welat, Serokê Austirya Îranê bi hevkarek stiratejîk nav dibe ku rolek berçav li aştiya cîhanî û deverê de dikaribe bigêre.

*Komara Islamî li hundir de bi hemû awayekê dengên dijber tepeser dike û rê bi biçûktirîn derbirîna azad nade. Di hember de Kilîstonê Asutiryayî azadî û demokrasiya Îranê bi nimûne dinirxîne!

*Li despêka Rêbendanê de yekem civîna nawnetewî li ser Cênosayd û komkujiya gelan li Stokholma ser bajarê Swêdê hat meşandin. Çarenivîsa gelên Rowanda, komkujiya Cihûyan bi destê Almana Nazî, Yogoslaviya berê, Çêçenîstan û Kurdistan, ev mijarane ne ku li vê civînê de bi beşdariya Sekreterê Netewên Yekgirtî, Kofî Ennan ketin ber got û bêjê. Komara Islamiye Îranê wek yek ji wan rejîmane ku dest li qir kirina gelên Îranê de hebûye. Lewma sefera Kilîston bo Îranê mirov dikaribe bi wateya piştîwaniya siyaseta serkût keraneye Komara Islamî binirxîne.

Wiyen a serbajarê Austriya yek ji navendên here girînge jo bo pêwendiya Îranê bi cîhana dereveye. Îranê navenda tiranzîta posta xwe li Austiyayê damezrandiye, hemû pêwendiyên Îranê bi cîhana dereve nemaze bo Ewropa li Wiyenê tên Kurdînasyon kirin. Ji bilî wê yekê bi milyonan Dolar peymanên aborî di navbera wan 2 welatane da hatin îmza kirin. Vê gavê Îran zêdeyî 9 milyar dolara deyndarê Austiyaye.

Gelê Kurd û xasmayî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ew xedra mezine dewleta Austirya ji bîr nekiriye ku ewana bikujên Dr. Qasimlo û hevalên wî di hember peymaneke 600 milyon dolarî dan Îranê. Lewma mirov dikaribe serdana wê carêye serok-komarê Austirya li Îranê di çarçovaeya, peyman bi nirxê xwîna gelên Îranê mêze bike.

# Pariyê nanê Kurdan di nava lepên Guran de ye

✍:Nûredîn Sofîzade


Kasibkarên Kurdistanê li sînoran dibin goriyên êrîşên Leşkerên rejîmê

Bi egera pirsgirêka bêkarî û destengiya ku li bin sîbera reş û biyome Komara Islamî de berhingarê civaka Îranê û bi xasmanî Kurdistnê bûye, gelê Kurd serbarê wan hemû tepeserî û girtin û kuştinên ku bi guneha Kurd bûn û xebata neteweyî ve bi serê wan de tê, bo peyda kirina parî nanek helal û domandina jiyaneke nemir û nejî, neçar in ku qedera xwe bixin nava gefa mirinê, ji ber ku vê rejîmê li Kurdistanê de çi kargeh yan şîrket û pirojên aboriye wisan ava nekirine ku xelkê Kurdistanê bikare bi kedkariya bi fermî jiyana xwe bimeşîne, neçar maye ku li dirêjiya sînorên navbera Îran û Tirkiyê û Îran û Îraqê de bi peyatî û li ser pişta Hespan, ji rêyên pir asê û ewraz û nişîvên rêze çiyayên bilinde Zagros û di nava sir û seqem û mija zivistanê û di germaya havînê de li ser meydanên mayîn û têldirên sînoran re derbas bin û hin caran jî di nava bose û gulebaran a çekdarên dijminan de paşî çend demjimêran xwe bigehînin meqsedê û her yek ji wan bi barên wek: Mazot- Benzîn- Çayî- perçe û ..., berê zehmet û cefa ya xwe destve bînin.

Lê ev şerê jiyanê bi vê hindê qinaetê naket û gelek caran kasibkarên belengaz bi terzên cur bi cur, wekî: Ketin di nava boseya çekdarên dijmin, yan nava meydanên mayînan, yan di nava sir û seqem û belayên din da, canê wan dibe xwarina gur û pasdaran û li cihê anîna barên tiştan, meytên wan li ser pişta Hespan tête ber derê xwedan.

Eva cihê baldanê eve ye ku serbarê wan hemû kiryarên hovane û ne qanûniye çekdarên Komara Islamî ku xelkê kasibkar, bêguneh û bê dadgeh dikujin û barê tiştên wan talan dikin, gelek caran bo dana meytê wan kasibkarên ku bi bêbextî dikujin û malbatên wan daxdar dikin, hazir nabin meytê wan bê bedel bidin û di hember her meytekê de daxwaza paketek şirînî û heqê fîşekan dikin û heta xwediyê kuştî daxwaza wan bi cih ne înin, ev meyt bi wan malbatên belengaz û bextreş nahê dayîn.

Qubaheta ji ya han mezintir jî eva ye ku dema malbat û xizm û kes û karên kuştiyan şikayet û hawara xwe ji destê wan bêdadiyên çekdarên rejîmê digehînine guhê rayedarên berpirsyar, ne her çi cezayekê bo wan bikujan diyarî nakin, belkî wan bikujan xelat dikin û li hemberî çavên xelkê belengaz dereca wan zêde dikin. Lewre roj bo rojê hejmara wan cure kuştinane rû li zêde bûnê ye û li sala 2003'yan de, li dirêjiya sînoran û li gund û bajarên cuda-cuda de bi dehan kes ji xelkê bêguneh bi vî awayî hatine kuştin.

Eva ku hate bas kirin parek biçûk ji vê rojreşî û êxsiriyê ye ku xelkê Kurdistanê bi xasmanî gundî û akinciyên ser sînoran tevî wan rû bi rû bûne û di vê pêwendiyê de fîlma ***Demek bo serxweş bûna* Hespan** ku fîlmçêkerê navdare gelê Kurd, Behmen Qubadî çê kiriye û xelatê navneteweyî jî wergirtiye, eyankerê herî başe wan rastiyên jiyana kasibkarên Kurdistanê ye û bêguman heta dema ku deshilata biyome Komara Islamî li ser hikim be, peyda kirina pariyê nanî vê bi zehmet û qîmeta canê mirovan be û rêya jiyana bi serfirazî û tenahiya gelê Kurd di girewa herifîna vê rejîmê û ava kirina sîstemekî demokratîk di Îranê de ye ku bikare gelê Kurd bi mafê qedera xwe bigihîjîne.

# Dîsan xew ji çavê şovînîstan herimî

Roja duşemiyê (22.12.2003) Ebdulah Gul Wezîrê Karê Derve yê Tirkiyê di Parlemana vî welatî de derheq wan guherînên ku di Îraqê de pêk tên û bi gotina vî derbê li Yekîtiya Niştimanî a Îraqê didin, hişdarî da.

Çend rojan piştî vê ku Kurd ên Îraqê terhê ava kirina hukûmeteke Federalî di çarçoveya Îraqekî demokratîk de ragehandin Ebdulah Gul di Parlemanê de got: heke di Îraqê de gavên şaş bêne hilgirtin vê Yekîtiya Niştimanî a Îraqê bikeve xeterê û yê qonaxeke nû ji alozî ên xeternak di Îraqê de pêk bên. Ankara nîgeranê vê hindê ye ku dana Otonomiyê bi Kurdên Îraqê vê bibe sedema vê çendê ku Kurdên Tirkiyê jî bixwazin çûran ji vî welatî wergirin.

Roja duşemiyê 5.1.2004'an jî Serok Komarê Sûriye seredana Tirkiyê kir. Ji sala 1921'an ve ku welatê Sûriyê hatiye ava kirin, eva cara yekemîn e ku Serokê Sûriyê seredana Tirkiyê diket.

Gengeşeya herî giring di navbera Serok Komarê Sûriyê û rayedarên Tirkiyê li ser pirsa Federaliyê li Kurdistana Îraqê de bû. Wan bi hêceta parastina Yekîtiya Niştimanî a welatê Îraqê dijberiya xwe tevî ava bûna Hukûmeteke Federal di Îraqê de dane eyan kirin.

Serok Komarê Sûriyê Beşar El Esed di hevpeyvînekê de gote televîzyona Tirkiyê, "ava kirina her dewleteke Kurdî an jî her kêmaniyeke din di Îraqê de vê bibe sedema aloziyê di navbera cîranên Îraqê de.

Her wisan roja sêşemiyê 10.1.2004'an Ebdula Gul bilez û bez xwe gihande Tehranê û bi rayedarên Îranê re li ser pirsa Kurdên Îraqê û daxwaza wan a ava kirina Hukûmeteke Federal got û bêj kirin. Ev hukûmetên şovînîstî dema ku pirsa Kurd bête holê, xew ji çavê wan diherime û bo ser negirtina daxwazên rewa û berheq ên Kurdan ku gelê kurd bi salan di vê pêxemê de qurbanî dane û xwîn rêtine, Pîlanan dadirêjin. Ji ber ku ev qet nikarin ava bûna Hukûmeteke Federal di pareke Kurdistanê de tab bikin û bo vê merema xwe, mijûlî gef kirin û asteng çê kirnê ne. lê di rastî de nikarin pêşiya ava bûna Hukûmeteke Federal di Kurdistana Îraqê de bigirin.

# Rêbendan e

**✍:Mihemed Resul Hesenpûr**

Rêbendan e, sir û seqem û cemed bênane, Kurdistanê, kirasek sipî li ber xwe kiriye.

Xwane xuê, bajarê Mehabadê ye, bajarê Qaziyê Pêşewa ye. Mêvan, Kurdên xwedî malîne û her yek ji wan li mileke Kurdistanê ve di nava befr û bagerê de hatine û xwe gihandine Mehabada hêlîna evîndaran.

Li nav bajêr de xulyaqet civiya ye, tevî dengê dihol û zirnayê, şahî û govend û dîlan e.

Li bajêr de malek nayî dîtin ku bê mêvan be, mêvanên hêja jî, qet xwe biyanî nizanin û bi xwe xwedî mal in.

Rêbendan e, her çend ku befr û seqem û cemed bênan e, lê bi vî halî jî, dara miraza Kurdan çilo daye û ber girtiye.

Rêbendan e, sir û seqem û cemed bêna ne, befr jî li bin pê yên rêvîngan de bi dengê kirte kirta xwe tevlî vê coşê dibe.

Tenê du roj li vê mehê (Rêbendanê) bihorîne, dem, dehê berespêdê ye, alaya sê renge Kurdistanê li meydana ***Çarçira***'ê de pêlan didet, koma Pêşmerge ên Kurdistanê bi kincên Kurdî û çekên Birno ên demokrat ve li her rexeke kolanan rawesane û sirûda "Ey Reqîb her maye qewmê Kurd ziman, naşkêne danerê topê zeman" distîrin û pêşkêş dikin.

Di nava hez û hurmetên gel de, Pêşewayê mezine Kurdan hat û di peyvîneke hekîmane de got: ***"Gelî Kurdên hêja û bi rûmet, ey ev kesên ku li her aliyeke Kurdistanê ve hatine û lêre amade ne, yan bi sedan kîlometran li vir dûr in û yek dil û yek ziman daxwaza azadiyê dikin. Cejna we pîroz be. Cejna ava bûna Komara Kurdistanê li we pêroz be. Cejna şikandina nîrê êxsîrî û bindestiyê li we pîroz be. Cejna azad kirina axa pîroze Kurdistanê li we egîd û xweşmêran pîroz be."***

Amade bûyên civînê, her ku ev peyvên mizgînîdere Pêşewa bihîstin, êdî ji keç û xortên nazdare nûgihêştî ve bigire heta pîremêrên piştçewiya ye dest bi kopal, hemûyan bi coş û şahiya vê mizgîniyê, rondikên kêfxweşiyê diwerandin.

Belê 58 salan berî niha li rojeke wekî îro de, li Kurdistanê cejn û şahî bû, govend û dîlan û cergebez bû, roja kêfxweşiya ava bûna Komara Kurdistanê bû. Bajarê Mehabadê serçopîkêş û meydana Çarçirayê bûka wê zistanê bûn.

Hejarê helbestvan wiha pênaseya wê roja dîrokî kiriye û gotiye:

***" Sed bihar xulamê vê zistanê bin"***

Ez jî dibêjim sed bihar xulamê wê zistanê bibin.

# Di hisreta azadiyê da

**Sadiq Eskerî**

**Bo têr kirina êtîmên zik birçî**
**Şad kirina bûkên xêlî reş**
**Ziha kirina hêsrên dayîkên dil şikestî**
**Ez bi kesên nenas re bûm nas**
**Kurên bab û diyên bîhanî**
**Lê birayên rojên reş**
**Di hisreta azadiyê de**
**Jina li hembêza dayîkê ji min bû xewn**
**Ez bûm çelengê destanrêsiya li serê çiyayan**
**Xweşmêrê bajar nedîtî**
**Lê sewdaserê bajêrvaniyê**
**Di hisreta azadiyê da**

**Balîfê min bû kevir**
**Doşeka min erdê req**
**Lihêfa min, hin caran**
**Giyayê xunav girtî**
**Hin caran kuliyên befra tezî**
**Hin caran esmanê sayî û tijî stêrkên geş**
**Hin caran evrên reş û tavyên baranê**
**Di hisreta azadiyê da**

**Bo fêr bûna zimanê dayîka xwe**
**Li xwe kirina kincên babê xwe**
**Bo parastina parçe zeviya 7 kalên xwe**
**Lavîtiya min borî**
**Wek hin hevalan**
**Evên ku bi devên kenî û çavên sor ji me qetiyan**
**Wek emrê çûyî qet wenegere**
**Di hisreta azadiyê da**

**Lavîtiya min borî**
**Hin rojan di nava geliyên kûr**
**Hin rojan li ser çiyayên bilind**
**Hin rojan di nava golên xwînê**
**Hin rojan di nava gerên govenda mêrxasan**
**Hin rojan di nava şînî û behiya hevalên dastan rês**
**Di hisreta azadiyê da**

**Lavîtiya min borî**
**Îro ez bi destên betal**
**Dilê tejî kovan**
**Li bajarên xerîb**
**Şahidê çûna emrê mayî**
**Û**
**Mirina kevne evîna dil**
**Û**
**Mezin bûna hisreta hembêza dayîka xwe me**

# Gotinên mezinan

❍ Mesliheta nav şovê, baştir e ji şerê ser coxînê.

❍ Serê ber minetan, bila biçîte nav zîyaretan.

❍ Ezmanê dirêj belaya serê xwedan e.

❍ Zikên birsî têr dibin, lê çavên birsî têr nabin.

❍ Kar karê Meymûnê, nav navê xatûnê.

❍ Dîzika kabanî bişkêne deng lê nayê.

❍ Barê hêcetan kes nikare rast biket.

❍ Bila şêr pişta mirov bişkêne, ne ku Rovî devê mirov walîs e.

❍ Car heye ku rew ji mêraniyê baştir e.

❍ Bihostek xemsarî, gezek xesaret e.

❍ Dengê diholê ji dûr ve xweş e.

❍ Rûviyê gerok çêtir e ji Şêrê xewok.

❍ Kes bi sela nabît mela.

❍ Kes li bin sîbera dara xweziyê ne rûniştiye.

❍ kesê nebînît zehmet, naxut neemet.

❍ Kê wefa be, ev bira ye.

❍ Mêran mêr dikuştin, Cibo hûyrivî dişuştin.

❍ Me bûk anî lez û bez, me xerc lêda rez û pez, sivka malê her bûm ez.

❍ Bila rê be, bila dûr be, bihoriya here, bila kûr be, keça bîne, bila pîr be.

❍ Tu çi bikî kovarê, vê ev bête xwarê.

STRANBÊJ Û HELBESTVAN XEBAT ŞAKIR:

# "DI HUNERA KURDÎ DE TÊKILIYA XAL-XWARZÎTÎ SERDEST E!"

:SALIHÊ KEVIRBIRÎ
salihkevirbiri@hotmail.com



*Ev hevpeyvîna jêrîn di sala 2002'yan, ji aliyê hevkarê hêjaye me Salihê Kevirbirî, tevî Stranbêj û helbestvanê jêhate gelê Kurd li Kurdistana Sûriyeyê, birêz Xebat Şakir, ku niha li Almaniya dijî, pêk hatiye û em bala xwendevanên Agirî bo vê hevpeyvîna han radikêşin.*

Kerem bikin hûn û gotûbêja ligel Xebat Şakir...

***

❑ **Kekê Xebat Şakir, di serî de sipasiya xwe pêşkêşî te dikim ku te deriyê mala xwe ji me re vekir. Dixwazim bi vê pirsa 'klasîk' dest bi gotûbêja me bikim; 'Xebat Şakir kî ye?**

Ji bo vê derfeta hanê sipas ji bo te. Ez Xebat Şakir, li Başûrê Biçûk di sala 1967'an de li bajarê Tirbêspiyê ji dayîka xwe bûme. Piştî xwendina qonaxa dibistana navîn, ji ber sedemên aborî û hinek tiştên din, min dest ji xwendinê berdaye. Malbata me bi xwe ji bakurê welêt e. Ev di sala 1959'an de ji Nisêbînê derbasî binxetê bûne. Nîvê malbata me li Bakur, nîvê malbatê jî li başûr e...

❑ **Ji kerema xwe re hinek behsa jiyana xwe ya hunerî ji me re bike. Ev têkilî bi çi awayî destpê kir?**

Piştî min qonaxa dibistana navîn qedand, ez ne şaş bim sala 1985 bû. Wê demê min dest bi karê muzîk û hunera kurdî kir. Di destpêkê de min xebata xwe bi komên muzîkê re pêk dianî...

❑ **Kekê Xebat tê berdewam bikî lê, dixwazim gotineke wisa li pirsa xwe zêde bikim: Di malbata te de kesên nêzî hunerê hebûn ku te sûd û feyz ji wan wergirtibe?**

Belê belê çawa? Di malbata me apê min *Xelîlê Mislit* ango *Xelîlê Êzîdî* hunermendekî çak e. Li dorhêlê tê gotin ku rehmetiyê *Mihemed Şêxo* ew wekî *'hoste'* ji xwe re qebûl dikir. Li hêla din bavê min û birayê min jî tembûrvan bûn. Dikarim ji te re bêjim ku ji sala 1983'yan û vir ve ez di nava keftûlefta muzîk û hunera kurdî de me.

❑ **Baş e siheta te xweş! Gelo yekem car tê bîra te ku te tembûr da destê xwe? Ka bi kurtî ji me re behsa hest û hizra xwe ya wê demê bike...**

Cara yekem di *'Koma Nûhilat'* de min tembûr da destê xwe û min lê xist. Di sala 1983'yan de, li *Taxa Rûknedîn* a li Şamê ligel çend hevalên xwe min dest pê kir û min stranbêjî kir. Baş tê bîra min, Mamoste *Elî Şengalî* jî li wê derê amade bû. Ew roj di jiyana min de rojeke taybet e û tu carî ji bîr û hizra min naçe û nikarim bi eşkere wê hestê bînim zimên.

❑ **Ramanên kesên li derdora te çawa bû di wê rojê de. Di rojên wisa yekem de, çi ji te re gotin, Tu çawa hatî pêşwazî kirin? Diyar e ku tu wê demê ciwanekî nûgihiştî bûyî...**

Rast e wê demê gelek kesên ku berî min bi demên dirêj dest bi karê hunerî kiribûn, hebûn û her çavên wan li ser min bû. Baş tê bîra min, ji min û ji kesên derdora min re wiha gotin: *"Heger Xebat li xwe şiyar be û hay ji tembûr û dengê xwe hebe, vê pêş bikeve!'* Bi gotin û handana wan camêran, ku ez her dibêjim *'mala wan ava'* ez jî li karê xwe mikum bûm û bi eşq û serbilindiyeke mezin min xwe da karê strangotin û muzîkê.

❑ **Baş e Hozan Xebat, pirseke min ê klasîk heye ku ji tevahiya dengbêj û stranbêjan dikim. Dixwazim ji te jî bikim; tu kîjan hozan ango stranbêjî ji xwe re mînak digirî. Tê gotin ku ji bo her hozan, stranbêj û dengbêjek *'delalekî/a ber dilan'* heye. Gelo ji bo te kesek an jî kesên rêber kî ne?**

Ez malavahiya te dikim ji bo pirseke bi vî rengî. Li ser pirsa te dixwazim bêjim ku zêdetir muzîka kurdî ya klasîk tesîr ango bandoreke giran li min kiriye. Di vî warî de jî kesê ku herî zêde ji xwe re mînak digirim, *'Pîr Miço'* ye. Ev nêzîkî du sal in ku rehma Xwedê kiriye. Li Holanda jiyana xwe berdewam dikir. Rehmetiyê Pîr Miço di warê muzîka klasîkî de bandora xwe li min kiriye. Eger bi giştî em bêjin, çend navên din hene ku eger ez navên wan nebêjim, ez neheqiyê li wan dikim. Ew jî *Şivan Perwer* e, *Seîd Gebarî* ye. Qedr û qîmeta van her du ciwanmêran jî li cem min gelek heye û tesîra wan jî li ser min gelek çêbûye.

❑ **Gelo heta niha çend stran û awazên Xebat Şakir gihîştine ber destê kurdîguhdaran?**

Mirov dikare behsa du beşan bike. Yek; berhemên şexsî, dudu; berhem ango stranên hevpar ku me ligel koman çêkirine. Du berhemên min ên şexsî ango du kasetên min hatine tomarkirin û belavkirin. Yek jê bi navê *'Lo Hevalno'* ya din jî; *'Gundê Min'*.

Yek di sala 1997'an de ya din jî di sala 1999'an de gihîşt ber destên hunerhezan. Niha jî berhema sêyemîn li ser kaseteka nû kar û xebatên xwe berdewam dikim.

Wekî kom jî heta niha me du kaset pêşkêş kirine. Bi *'Koma Nûhilat'* re li Şamê di sala 1985'an de me kasetek çêkir. Piştî ku ez di sala 1989'an de ji leşkeriyê vegeriyam, me li Tirbêspiyê bi navê *'Koma Hêzil'* komek ava kir û kaseteke wê komê jî derketiye.

❑ **Ev komên we ji çend kesan pêk dihatin?**

Koma Nûhilat tevî folklorê ji 20 kesî pêk dihat. Lê em 7 kes bûn ku me karê lêxistina amûrên muzîkê û stranbêjî dikir.

❑ **Terza ku tu dikî çawa ye, çi terz e? Ango bi awayekî kilasîk bibêjim; tu çi navî li hunera xwe dikî?**

Ez dikarim bêjim, terza min bi giranî terz û şêweya kilasîk e.

❑ **Tu di hunera xwe de zêdetir li ser hêma û teşeyên çawa radiwestî? Stranên ku tu distrî, bi zêdeyî li ser çi ne. Gava ez li stranên te yên di her du kasetan de guhdarî dikim, dibînim ku stranên te yên şoreşgerî li ser hikûm in. Tu ji bo vê nêrînê çi dibêjî?**

Siheta te xweş! Jixwe te bersiva pirsa min jî da. Rast e, di her du berhemên min de stranên min bi piranî şoreşgerî ne. Di serdema ku me jiyana xwe li welêt diborand, bêhna şoreşê difûriya. Lewre jî şoreşê tesireke wisa li me kir ku em wan di berhemên xwe de derxin pêş. Lê ez dixwazim di kaseta xwe ya sisêyan de bi giranî li ser evîn û evîndariyê rawestim. belê dîsa jî bêyî evîna welêt nabe. Emê vê carê ligel evîna yarê, dîsa jî behsa serzemîn û evîna welatê bab û kalan bikin.

→

**❑ Tiştê ez dibînim, navbera te û enstrûmanê jî baş e. Xuya ye tu û sazê li hev dikin.**

Belê rast e. Di destpêkê de min saz da destê xwe. Piştî heyamekê êdî min dest bi strangotinê jî kir. Ez nabêjim ez tembûrvanekî gelekî xurt û zîrek im. Saz ango tembûr ji bo min alav ango navgînek e ku ez derdê xwe yê vegotinê der bibim û xwe rave bikim.

**❑ Em stranbêjiya te deynin aliyekî û em bêne ser helbestvaniya te. Tu helbestan jî dinivîsî û min bixwe çend helbestên te di kovarû rojnameyên kaxezî û malperên înternetê de xwendine. Li ser helbestê tê ji me re çi bêjî. Tu heta çi radeyê dikarî di helbestê de kul û keserên xwe vebêjî?**

Gava din min got; *'ez ne tembûrvanekî baş im!'.* Her wiha helbestvaniya min jî ne hewqas e *(dikene).* Ez ne helbestvanekî baş im. Lê ji helbestê hez dikim.Dibe ku ez ji helbestên xwe hez bikim. Lê ya girîng û watedar ew e ku xwendevan bêje *'ev helbest xweş e'* Dema min dest bi stranbêjiyê kir, min dixwest bi gotinên xwe, bi hestên xwe bikevim nava civatê. Ji ber vê yekê jî gotinên gelek stranên min, helbestên min bixwe ne. Bi vê yekê min dixwest helbestên xwe bixim xizmeta gel.

**❑ Baş e wê gavê wisa bipirsim; helbest ji bo te çi ye?**

Helbest ji bo min hest e, evîn e, xweşikahiya jinê ye, rasteqîniya jiyanê ye, rûmeta welêt e.

**❑ Gelo gelek helbestên te gihane ser hev?**

Heta niha li dora 60 helbestên min bi awayekî nivîskî li ber destên min amade ne.Wekî stranên min, helbestên min jî di şêweya kilasîkî de hatine nivîsîn.

**❑ Dîtina te li ser helbestên nûjen çi ye?**

Ez xwe piçekî dûrî helbestên nûjen dibînim. Wekî min got bêhtir xwe nêzîkî helbesta klasîk dibînim.

**❑ Ji stranê kasêtên te, gotinên çendan te bixwe nivîsîne?**

Di kaseta min a yekemîn de sê stran ne yê min in. Yek ji wan strana *Ednan Sebrî* ye, ya din strana birayê min *Têlî Şakir* e. Stranek jî gelêrî bû. Navê stranê *'Xerîbê'* bû berê bi wî awayî nehatibû gotin. Min bixwe ji devê çend mirovên kal ew stran girtibûn û li gorî xwe min şirove kir û ew got. Di wê kasetê de neh stran, stran û gotinên min bixwe bûn. Di kaseta din de jî, dîsa sê stran ne tê de, stranên mayî ligel gotinên xwe hemû yê min in.

**❑ Di nava stranên te de rola stran û awazên folklorî çî ye?**

Rola stran û awazên folklorîk di hunera min de pir xuya ye û dikarim bêjim bingeha hunera min ji folklorê tê.

**❑ Pirseke min a taybet eve ye ku Hunermendên kurd dikarin heta çi qasekê xwe di platforma hunerî a kurd de bibînin? Ez vê yekê li gorî derfetan dipirsim. Hinek kes hene ku di warê derfetan de rê heta dawiyê ji wan re vekirî ye. Lê gelek kes jî hene ku li derveyî vê kategoriyê dimînin û bê derfet û mecal in. Di vî warî de gelo ez ne şaş im?**

Na! Tu rastî û mafê te heye. Dibe ku gotina min hinek giran be lê mixabin ku di vî warî de rantek çêbûye û beşekî biçûk ji van hunermendan vê rantê dixwin. Hinek ji rola *'xal û xwarzîtiyê'* di vî warî de heye. Gelek derfet ji bo hinek kesan tê terxankirin ku li gorî baweriya min ne hêjayî vê yekê ne. Ew li ser pişta hinekên din derdikevin pêş. Lê ez di wê baweriyê de me ku kesên ku li ser pişta hinekan derdikevne qada hunerê, dê rojekê jî bi awayekî hêsanî bikevin ango biterpilin.

Bi raya min tiştê girîng ew e ku mirov bi hunera xwe, bi stranên xwe, bi pênûsa xwe, bi firçeya xwe li ser piyan bisekine, ne bi mam û xalan!

**❑ Diyar e derdê te jî di vî warî de giran e! Gelek caran hunermendên me, stranbêjên me rewşekî wisa li wan peyda dibe ku mirov dikare wê rewşê bi gotina *'kêr gihaşt hestî'* şîrove bike. Gelo tu jî carinan dibêjî; *'ezê dev ji strangotin û hunerê berdim!'***

Belê rast e, min bixwe jî gelek caran wiha gotiye. Ez bixwe 20 sal in ku xebata xwe bi keda destê xwe û xuhdana eniyê pêk tînim. Heta niha jî min pênç çerxî piştgirî ji tu kesî negirtiye. Lewra jî carinan mirov aciz dibe û dixwaze terka evîna xwe bike ku ev evîn sazbendî û stranbêjî ye ji bo min. Gelek caran min xwestiye saza xwe li erdê bixim û bişkênim. Paşê qedrê hunerê nahêle ku ez vê yekê bikim. Dibêjim bila kêfa hinek xêrnexwazan neyê û ez dîsa dest diavêjim qevdika saza xwe, hevala xwe ango evîna xwe.

**❑ Wekî ku hate diyarkirin aliyê te yê hunerî li welêt destpê kiriye. Niha tu li derveyî welat hewl didî ku jiyana xwe berdewam bikî. Dema tu xebata li wêlêt û li derveyî welêt didî ber hev, çi cudahî derdikevin pêş?**

Keko! Xebata li welat çiqas dijwar bû, hewqas jî xweş û geş bû. Welat, kaniya berhevkirin û xwe îfadekirina huner û hunermendan e. Li welatê biyanî, em mîna gihayê hişk in bûyî ji koka xwe dûr in. Ezê tenê bi mînakekê cuda bûna ku te pirsî rave bikim: Ji sedî 95ê berhemdariya min ji welêt e.

**❑ Tu jî ji wan kesan î ku dibêjin; *'Birçî bûna li welêt, ji têrbûna welatê xelkê birûmetir e'?***

Belê belê hezar carî jî belê.

**❑ Başe Kekê Xebat Şakir. Me behsa helbestan kir, helbesteke te gelekî bala min kişandiye; *'Girxatûn'.* Ez dixwazim ku tu çend rêzikan ji vê helbestê ji me re bêjî?**

Wey ser serê min birayê Salih! Girxatûn, navê gundekê li binxetê ye. Li dora 40 kîlometir nêzîkî sînorê Bakur e. Ezê niha beşek ji vê helbestê bo te dê bixwînim:

**❑ Kerem bike...**

*Girxatûn;*
*Xaniyekî kevn û odeyeke mezin*
*Em duwanzdeh nefs lê raketin*
*Çend kox û çend kadîn û hewşeke kevirî*
*Dergehê li ber derê hewşê sêlik û çend textên rizî*
*Li pişt mala me girekî mezin û li aliyê din co diherikin*
*Ava bû gundê me*
*Tarek Xaltî û yek Çêlikî*
*Tevlihev bû gundê me hin misilman û hin êzîdî*
*L ê me tucaran nekir şer û dubendî*
*Li cem me hebû tifaq û tebayî*
*Pê re jî kêf û şahî û biratî*
*Li vir mezin bûm bi serbilindî*
*Li hêleke gundê min cerih û mizgeft*
*Li alî din Bagok û Serxet*
*Li bakur têlên rêsayî bombe û mayîn*
*Gelek kurên camêran lê hatin kuştin*
*Li pey wan komên kûlfeta sêwî hiştin*
*Şikriyê Kopo û Xelîlê Mîrzo*
*Gundiyên min bûn her du*
*Hatin kuştin li ser sînorê tirko*
*Li zû hildan tola wan Gurgîn û Ferho*
*Wan qebûl nekirin sînorê tirko*
*Rêzan û rêber bûn her du...*

Belê çend bendên din jî mane lê ez bawer im ku te got kurtiyek ji helbestê.

**❑ Wey siheta te xweş Kekê Xebat! Bi rastî straneke zor xweş e. Beriya ku em dawî li hevpeyvîna xwe bînin, dixwazim ji bo rojên pêş, plan û projeyên te hîn bibim...**

Belê wekî min di serî de got, hewl didim ku kaseta xwe ya sêyemîn çêbikim. Her wiha gelek heweskar im ku helbestên min bi xêra hinek xêrxwazan wekî pirtûk ronahiyê bibîne. Bi vê hevpeyvînê û bi rêya te bang li weşangerên kurd dikim ku ji bo çapê xwe bidin ber vê projeyê.

**❑ Stranbêj û helbestvan Xebat Şakir zor sipas ji bo bersivdayîna pirsan û ji bo mêvandariya te jî dibêjim mala te ava...**

Sipasxweş!

*Jêrenot: Ev gotûbêj, di hejmara 5'an a Kovara Tîrojê de jî hatiye weşandin...*

## Hevdîtinên Sekreterê Giştiyê Partiyê li Utrîşê



***Birêz Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, di heyamê wan çend rojên seredana xwe ji welatê Utrîşê (18-22.01.2004'an), çend rûniştin û hevdîtin tev rayedar û siyasetvanên Utrîşê pêk anîn ku emê lêre de îşare bi çend pişk ji wan hevdîtin an bikin:***

-Roja 18'ê Janurya 2004'an birêz Ebdula Hesenzade bi Dr. "Karl Schramek" berpirsyarê berê yê Sekertariyeta Navneteweyî a Partiya Sosyal Demokrat a Utrîşê (SPO), Balyozê pêşîn yê Utrîşê li Komîsyona Alîkarî û Geşandinê li Firansê, û balyozê nû yê Utrîşê li Sûriyeyê re civiya.

-Roja 19'ê Janurya 2004'an Sekreterê Giştî yê Partiyê bi birêzan Dr. "Heinz Fischer", cîgirê serokê SPO'ê û her wisa serokê duyemîn yê parlemana Utrîşê re hevdîtin pêk anî.

Birêz "Fischer" ber endamê SPO'ê ji bo berpirsyariya Serok Komariya Utrîşê ye. Hilbijartina serok komariyê li meha Aprîla îsal de dê bihê lidarxistin.

-Roja 20ê Janurya 2004'an, birêz Ebdula Hesenzade bi Dr. "Michael Spindelegger" berdevkê karê derve yê Feraksyona Partiya Demokrat Mesîhî a Utrîşê (OVP) re hevdîtin kir. OVP Partiya deshilatdar û sereke li dewleta hevalbend a Utrîşê de, û Serokê Mezin (Sedr Eizem)ê wî welatî jî ser bi vê Partiyê ye.

-Roja 21'ê Janurya 2004'an Sekreterê Giştî yê Partiyê bi Dr. "Petrr Pilz" yek ji kesayetiyên navdare Partiya Keskên Utrîşê û endamê Feraksiyona Keskan li Parlemana Utrîşê re hevdîtin kir.

Di wan hevdîtinan de birêz Sekreterê Giştî yê Partiyê tevî wan kesayetiyan derheq rewşa Îran, Kurdistana Îranê, helwestên PDK Îranê û rewşa Îraqê û Kurdistana Îraqê piştî êrîşa Amreîkayê bo ser wî welatî û hin pirsên pêwendîdar bi Herêma Rojhilata Navîn bas û gengeşe kirin û bîr û ra guherîn. Nonerên partiyên siyasî ên Urtrîşê bi hûrî û eleqe ve bala xwe bo axavtin û berhevdanên birêz Sekreterê Giştî ye partiyê kişandin. Birêz Ebdula Hesenzade pirsyarên wan bersivandin.

Hejî gotinê ye ku aliyên hevdîtinê li zaf waran de nêrîn û hizrek nêzî bi Sekreterê Giştî yê Partiyê hebûn û piştgirî û hevalbendiya xwe bi xebata xelkê Kurdistanê û hemû gelên Îranê bo azadî û demokrasiyê di Îranê de ragihandin.

-Roja yekşemî 18'ê Janury'ê Sekreterê Giştî yê Partiyê bi Komîte û endamên partiyê re li Utrîşê civiya.

Li destpêka civîna han de birêz Sekreterê Giştî yê Partiyê baseke giştî li ser rewşa niha a Partiya me, rewşa Îranê û Kurdistana Îranê û her wiha bûyer û guhertinên çend mehên bihorî li Îraqê û bi xasmanî di Kurdistana Îraqê de pêşkêş kir. Li pişka duyem a vê civînê de, hevalên Partiyê pirsyarên xwe anîne zimên, ku bersiva wan pirsan ji aliyê birêz Sekreterê Giştî yê Partiyê ve hate dayîn.

## Çend nûçe ji Kurdistanê

**URMIYE**

### Konsertek Muzîkê li Urmiyê ji bo hevpêwendî ligel goriyên Erdheja Bem'ê

Rojên 14-16'ê Januara 2004'an (24-26.11.1382'e Rojî), li bajarê Urmiyê konserek bi navê piştgîrî û alîkarî bi xelkê Bemê re hat lidarxistin. Ev konsert bi alîkariya ***Navenda çand û hunera Ehmedê Xanî*** tayê Urmiyê hat amadekirin. Dora 3000 kurdan ji bajarê Urmiyê û li derdoran tevlî vê şahîyê bûn û guhê xwe dane hunermendên bi navûdeng yên kurd Elî Zendî, Kawûs Mîlan, Hesen Şucayî û Ebdula Hesenzade.

Konser di salona sînema Terbiyeta Urmiyê da hat pêşkêş kirin. Gelek kesan li ber nebûna cih nekarîn beşdarî konsertê bibin.

Qirar e Dirafê firotina bîletên her sê rojên konsertê jî ji bo zelzelelêdayên Bemê bête şandin. Tê gotin, qirar e konsertek bi wî şeklî li bajarê Xanê jî bêt amade kirin.

Li hember meşîna vê konesrtê Hêzên rejîmê zor asteng û arîşe pêk anîn. Berpirsyarên Navenda çand û hunera Ehmedê Xanî daxwaz ji rayedarên Komara Islamî kirbûn ku ev konserte li Werzişgeha Textî a Urmiyê bihê meşandin. Lê rejîmê bersiva daxwaza demokratîk a Navenda çand û hunera Ehmedê Xanî neda. Wan wêne girtin ji rê û resmê qedexe kir û çi kesekê mafê wê çendê nebû ku wêneyan hilbigire. Ji hêla hunermendên Kurd ên Navenda çand û hunera Ahmedê Xanî ve hin sirûdên şoreşgerî hatibûn amade kirin ku ji pêşkêş kirina wan jî pêşgîrî hate kirin. Wan ji bo pişkdarî kirina xelkê Kurd û gelên din yê akinciye Urmiyê zaf asteng derxistin holê, lê gelê me yê Kurd bi giştî û xelkê din jî bi germî beşdarê vê konsertê bûn.

### Radyoya Tehranê weşana xwe ya bi kurdî ji 7 saetan bo 4 saetan kêm kir

Li Îranê, Radyoya Tehranê ku eve 57 sal e weşana kurdî dike bernameya xwe ya kurdî ji 7 saetan, daxist 4 saetan. Radyoya ku bi zarawayên kurdî ên kurmancî û Soranî weşanê dike û di bernameya xwe de nûçe, bernameyên civakî, çandî û hunerî, cîh dide.

Li gor vê serastkirinê dê ji 21'ê Rêbendana 2004'an pêve saetên weşanê radyoyê ya bi kurdî vê bi vî rengî be:

Li gor saeta Tahranê dê weşana serê sibê ji 7'an heya 8'an li ser pêla kurt 13720 KHz beranberê 22 metroyan û pêla navîn 639 û 1161 KHz be. Ya êvarê dê ji saet 17:00'an heya 20:00'an li ser firekansa pêla kurt 13790 KHz beranberê 22 metroyan û 9485 KHz û beranberê 31 metroyan be.

Li gorî agahiyan kêmkirina dema weşanê bûye sedema nerazîbûna kurdan. Radyoya Tehranê ligel kurdên li rojavayê Îranê, ji hêla kurdên li Tirkiyeyê û Iraqê ve jî tê guhdarî kirin.

### Li SELMASê Ciwanek sivîl û bêguneh hate kuştin

Demjimêr 8.5'ê sibêdehiya roja înê 01.16.2004'an, ciwanek bi navê Zinar Pazîvî (Etmanî) kurê Ebdulrehman xelkê gundê Axvêrana bajarê Selmasê, dema ku bi maşîna xwe ber bi bajêr diçû, ji aliyê hêzên leşkere rejîmê ve hate gulebaran kirin û her li cî da jiyana xwe ji dest da. Kuştina bêgunehe navhatî tevî bêzarî û meşa nerazî bûna xelkê deverê rû bi rû bû. Rayedarên Komara Islamî çi bersivek nedane malbat û kes û karên wî kuştiyê sivîl û bê berevan.

## Kirman

### Hêzên leşkerî ên Komara Islamî êrîş birin ser meşa nerazî bûna kedkaran û 7 kes kuştin

Li gor nûçeyan, hêzên dijî gelî ên rejîma Komara Islamî, xwepêşandan, rexne û gazindeyên kedkarên kargeha helandina Mîs li Xatûn Abad'a ser bi bajarê Babek a kermanê û xelkê nerazî yê vê deverê bi tundî tepeser kirin. Li gor raporan, rejîmê di dema meşa ne razî bûna kedkarên vê civatgehê de bi merema vê ku xwestik û daxwazên xwe bînine holê, li cihê çareser kirina vê pirsgirêkê ji rêya got û bêj û dan û standinan ve, bi şandina hêzên taybetî ên Garda dijî şoreşê û bi mifah wergirtin ji çekên cur bi cur û hilîkopterê dest bi tepeser kirina wê meşa nerazî bûnê kirine. Li gorî raporên ne fermî 7 kes ji xelkê sivîl hatine kuştin û dehan kes jî birîndar bûne.

### Dewleta Komara Islamî a Îranê ji ber Têkiliyên nû bi Mîsrê re navê rêya terorîst "Xalid Slambolî" diguherîne

Endamên şêwra bajarê Tehranê bi piraniya dengan, guherîna navê rêya ***"Xalid Slambolî"*** - Terorîstê ku



Enwer Sadat Serok Komarê berê yê Mîsrê kuşt - pejirand. Ev daxwazkariye ji hêla Wezareta Karê Derve ya Komara Islamî a Îranê hatibû holê. Biryara han piştî hevdîtina her du Serok Komarên Îran û Mîsrê li meha derbas bûyî de kete rojevê. Welatên Îranê û Mîsrê heta berî serhildana sala 1979'an, têkiliyên nêzîk hebûn û di navbera Şayê berê yê Îranê û Enwer Sadat têkiliyên germ û hevalane hebûn. Pêwendiyên wan du welatane piştî îmza kirina rêkevtina Aştiyê a Kemp Dêwîd, di navbera Îsraîl û Mîsrê û piştî wê çendê jî ku Mîsrê mafê penaberiyê da Şayê Îranê, neman. Li pey terora Enwer Sdat li sala 1981'an rêya Wezîrên Tehranê bi rêya Xalid Slanbolî bikujê Serok Komarê Mîsrê hate bi nav kirin.

Xalid Slambolî piştî terora Enwer Sadat hate li darve kirin. Bi nav kirina vê rêyê yek ji sedemên bingehîne nebûna têkiliyên Îran û Mîsrê dihate hesibandin. Tê gotin ku ev guhartine dê bibe sedema têkiliyên nû yên di navbera wan du welatane de.

Li gorî rapora ÎRNA, nûçegihanê fermî yê Îranê, Hemîd Riza Asifî di wê pêvajoyêde got: Guhartina rêya Xalid Slambolî li gor rewşa nû ya ku di navbera Îran û Mîsrê de pêk hatiye, derketiye holê.

Her wiha jêderên nûçeyan li Îranê dan zanîn ku Asifî, berdevkê Wezareta Karê Derve di civîna şêwra bajêrê Tehranê de pişikdar bû.

hûrî axivî û Federalîzm weke rê çareya doza neteweyî li Îranê de dest nîşan kir.

Ev civîne bi bersivandina Kekê Teymûr Misfetayî bi pirsyarên hejmarek ji beşdaran bi dawî hat.

## Li civîna nirxandina rewşa weşan û dezgehên ragehandina PDK Îranê:

### "Gerek kar û barên çandî û hunerî di pêvajûya xebatê de bihêne organîze kirin"

Demjimêr 10:30'ê pêşnîvroya roja 23'ê berfranbarê li yek ji salonên binkeya D.S a PDK Îranê, civînek bo heval xalid Mihemedzade derheq nirxandin û rewş û erk û wezîfeyên weşan û dezgehên ragehandine PDK Îranê hate lidarxistin. Basa wê civînê derheq erk û nirxandina ragehandina Partiyê pêk hat. Di vê civînê de Kekê Xalid îşare bi erk û wezîfeyên ragehandina partiyê kir û bo pêşveçûna kar û barên organên berpirsyar çend xalên girîng pêşniyaz kirin û pê li ser vê hindê çeqand ku gelek kar û barên çandî û hunerî di pêvajûya xebatê de bihêne organîze kirin.

## Cejna 2'ê Rêbendanê li Navenda 3'a Kurdistanê hate pîroz kirin

Li gor rapora ku ji navenda 3'a Kurdistanê ve gihîştiye destê me, roja 2'ê Rêbendanê ji bo bîr anîna vê roja pîroz û dîrokî, rê û resmekî bedew hate lidarxistin.

Ev rê û resme demjimêr 1'ê piştînîvro bi sirûda neteweyî a ***"Ey reqîb"*** û rawestana deqeyek bêdengî bo rêz girtin ji şehîdên rêya rizgariya Kurd û Kurdistanê dest pê kir.

Piştî vê ji aliyê birêz Rostem Cehangîrî, endamê Komîteya Navendî û berpirsyarê navenda 3'ê ve peyamek hate pêşkêş kirin û tê de li ser girîngî û taybetmendiyên vê roja dîrokî tekez hate kirin.

Li dirêjahiya vê rê û resmê de sirûd, pexşan û şano hatin pêşkêş kirin û bi govend û dîlanê hate xemilandin. Rê û resma han li ser yek 5 demjimêran dom kir.

## Birêz Mistefa Hicrî, li Civînek derheq Siyasetên Amerîka li Rojhilata Navîn:

### "Partiyên siyasî dibe xwe ji bo qonaxekî nû ya xebat û têkoşînê amade bikin"

Roja 18'ê Befranbara 1382'a Rojî (08.01.2004), civînek ji bo Birêz Mistefa Hicrî endamê Deftera Siyasî a Partiyê derheq, ***siyasetên niha yên Amerîkayê*** hate lidarxistin. Birêz Msitefa Hicrî ligel îşare kirin bi rola Amerîka di devera Rojhilata Navîn de, li ser sedemên dest pê bûna şerê Îraqê axivî. Kekê Mistefa li doma gotinên xwe de, hate ser rola pozetîv a Kurdan li piroseya rizgar kirina Îraqê û bi giştî rola Kurdên Kurdistana Îraqê li herifandina rejîma Beis girîng nirxand.

Birêz Mistefa Hicrî di axavtina xwe de wezîfeya Partiyên Kurdî di wê derheqê de dest nîşan kir û got: "Eger Kurd bikare mifahê ji wan keys û derfetane werbigire, dê bi qazancê Kurdan xilas bibe û ji partiyên siyasî ku yek ji wan Partiya Demokrat e, xwe ji bo qonaxekî nû ya xebat û têkoşînê amade bikin".

Ev civîne piştî bersivdana Birêz Mistefa Hicrî bi pirsyarên pişikdarên civînê, dawî bi karê xwe anî.

## Mela Hesenî di xutbeya nimêja înê li Urmiyê:

### niha ku kêrhatî bûna ve hatiye betal kirin, bo çi hûn nerehet in

Roja 16.01.2004'an, Mela Hesenî di xutbeya nimêja înê li bajarê Urmiyê de ji şêwra Nobedar wek parêzvanê tenahiya welat û nîzamê nav bir û got: "Ev nonerên ku di Parlemanê de girev girtine, wek butên nav Keibê [mala Xudê] li destpêka Islamê de ne, ku dibe em wan li vir de derêxin".

Her wisa wî got: "Heke ciwanên cesûr û netirs ên bajarê Qom û Tehranê bihên, yê wan li vir de derêxin û heke rêberê mezin yê Şoreşa Islamî a Îranê biryara xezayê bidet, wezîfeya me ye ku em vê biryarê cî bi cî bikin".

Hesenî got: "Ez sipasê ji heyeta Zêrevaniyê dikim ku kêrhatî bûna hejmarek ji wan noneran ku name ji rêber re nivîsandibûn ret kir".

Wî zêde kir, niha ku kêrhatî bûna ve hatiye betal kirin, bo çi hûn nerehet in?!

## Civînek derheq dirûşma stratijîk a Partiyê

Roja 29'ê Befranbarê, civînek bo birêz teymûr Mistefayî endamê Komîteya Navendî a PDK Îranê hate lidarxistin.

Di vê civînê de ku bi pişikdarî kirina hejmareke berçav ji Kadro û Pêşmergeyên Partiyê pêk hatibû, birêz Teymûr Mistefayî li pêwendî tevî dirûşma stratijîk a Partiyê bi

## Şandeke Yûnanî seredana Deftera Siyasî a PDK Îranê kir

Demjimêr 11'ê pêşnîvroya roja pêncşemî 08.01.2004'an şandeke siyasî-çandî a welatê Yûnanê pêkhatî ji birêzan: Cemîl Turan, Girîgus û Padîlus, seredana D.S a PDK Îranê kir. Ev şande ji aliyê endamên rêberî a PDK Îranê, pêkhatî ji birêzan: Elî Mêhrperwer, Hesen Şerefî, Mistefa Mewlûdî, endamên Deftera Siyasî a partiyê û birêz Fetah Kawiyan û Kemal Kerîmî endamên Komîteya Navendî ve hate pêşwazî kirin.

Di hevdîtin û rûniştina wan her du aliyan de komek pirsên girêdayî bi Îran û Kurdistanê û rewşa çandî a Kurdistanê ketin ber bas û guherîna bîr û rayan. Şanda mêvan kêfxweşiya xwe derheq wan hevdîtin û basan eyan kir û hêvî xwest ku ev rûniştinên wiha zû-zû bihên lidarxistin.

# Hin destkevtên Demokratîk û bajêrvanî ên Komara Kurdistanê

✍:azadkurdî

Doma rûpelê 20

Komara Kurdistanê bi mifah wergirtin ji rewşa piştî hiloşîna şerê cîhanî yê duyemîn û lawaz bûna deshilata navendiya Riza Şah pêk hatibû. Her çi qas ku temenê deshilatdariya pir zêrîn û dîrokiye Komara Kurdistanê 11 mehan pitir dom nekir, û tenê di pareke kêm ji axa Rojhilatê Kurdistanê (yek ji sêye) de pêk hatibû, lê gelek destkevt û gavên buhagiran û girîng di pêxema bi dest ve anîna armancên damezirandina yekem Komara Demokratîk a Kurdistanê de ji bo pêk anîna guhertinên kûr û berfireh û baştir kirina jiyana xelkê di hemû waran de û hin gav û bernameyên ser û ber ên ***siyasî, bajêrvanî û demokratîk*** hatin hilgirtin. Emê lêre de îşare bi çend nimûne ji wan destkevtên bajêrvanî, demokratîk û gavên pêşverûye Komara Kurdistanê li wî serdemî de bikin.

***

### Gavên çandî (Ferhengî) ên Komara Kurdistanê

Bêşik û guman her partî û rêxistinek azadîxwaz û demokratîk ku bikare bername û siyasetên xwe di nav civakê de bizeliqîne, diviya di pêngava yekemîn de xelkê hînî (fêr) çanda Demokrasî û jiyana Medenî bike û civatên xelkê ligel nirx û buhayên demokratîk bide nasandin. Lewre serok û berpirsyarên Komara Kurdistanê bo wê çendê ku bikarin kesayetiya şikestiye mirovê Kurd sertaze bidin vejandin û bikin xwediyê nasname û pênaseya neteweyiye xwe û nehêlin çi din bi hêsanî siyasetên ***Mistên Hesinî*** û helandin û ji nav birina çand û kultura Kurd ji aliyê rejîma Pehlewî ve bihên meşandin û her wisa bo wê çendê ku seha neteweyî, welatparêzî û azadîxwazî a xortên gelê Kurd bi hêz û xurt bikin, zor baş hewcehiya xebat û têkoşîna çandî fêm kirin û bi ava kirina 2 Wezaretên Çand û Teblîxat (Propagende)ê, çalakane di pêxema vejandin, parastin û pêş xistina ziman, dîrok û wêjeya Kurdî weke bingehên deshilat û îradeya neteweya Kurd pêngav hilgirtin û bi hemû awayekê mijûlê xizmet kirin bi çand û kultur û toreya Kurdî bûn. Lewma di heyamê deshilatdariya Komara Kurdistanê de çend belavokên cur bi cur çap û belav bûn. Bi fermî nas kirina zimanê Kurdî, der kirina biryarnameya xwendin bo kur û keçan û sizadana wan kesên ku berevajî biryara han tevdigerin, vekirina pirtûkxane, xwendingeh, ava kirina weşanxaneyan, weşan û belavokên cur bi cur, vekirina Radyo, ji aliyê berpirsyarên Komarê ve rewşek bedew û hêja bo pêşketin û hişyar bûna civatên xelkê hate pêk anîn. Hetanî qasekî zor jî azadî bi nivîskar, torevan, hozanvan û rewşenbîran hate dayîn, heya ku ji rêya berhem û afirndinên xwe ve xizmeta çand, ziman û kultura Kurdî bikin û bi belav kirina nêrîn û ramanên cur bi cur asta hişyariya siyasî û çandiye xelkê zêde bikin. Evan bi meşandina wan cure siyasetane dixwest ku hizr û ramana gel geş û ronahî bikin û rewşê bo guhertinên kûr û berfirehe civakî di Kurdistanê de pêk bînin.

Heke em nirxandinekê ji siyasetên çandî di navbera Komara Kurdistanê û rejîma Pehlewî bikin, bo me derdikeve ku serbarê wê ku wan îdiaya Modernîze kirina Îranê hebûn, çend ji rastiyê bi dûr bû. Dewleta Şahenşahî çi rêz û rûmetek bo mafê jiyan û hevwelatî bûna gelên Îranê bo bingehê projeya modernîzasiyona berçav negirt, heta ku bibin xwediyê nasnemya xwe. Lê Mihemd Riza Şa Artêş berda can û malê xelkê û bi hêza Artêşê xwe ji çi kiryarekî hov û cinayetkarane derheq bi gelên Îranê bi giştî û bi xasmanî gelê Kurd ne parast. Rejîma Pehlewî hebûna xwe li ser deshilatê bi bûna çanda paşverû didît û geşe kirina civakî û kulturî bi xeterek bo ser xwe dizanî. Lê berevajî wê sîstemê, deshilatekî gelî û demokratîk li Kurdistanê dest bi demokratîze kirina civaka Kurdewarî û cîgir kirina demokarsî û civaka bajêrvanî û jiyana medenî kir.

### Gavên civakî ên Komara Kurdistanê

Komara Kurdistanê ku bi destê PDK Îranê hate ava kirin, wek Partiyeke Demokrat û Azadîxwaz armanca geşe kirin û pêş xistina aliyên jiyana xelkê di bernameya xwe de cih kiribû. Serok û berpirsyarên Komarê bi başî rewşa civaka Kurdan dinirxandin û bernameyên ser û ber bo çareser kirina pirsgirêk û kêmasiyên civakî mizext dikirin. Lewre yek ji pêngavên bajêrvanî û demokratîke Komarê, pêk anîna Rêxistina Yekîtiya Jinên Demokrat a Kurdistana Îranê û der kirina Kovara ***GELAWÊJ*** bû, ku hêvî û daxwazên wan dida rojevê. Pêşewa Qazî Mihemed bi xwe jî gelek hewl dida ku jinan bo xebat û têkoşînê di hemû waran de rabikêşin ta ku ji hêz û şiyan û pisporiya wan bo guhertinan mifah were wergirtin.

Her wisan yek ji biryarên medenî û pêşkeftiye Komara Kurdistanê bi fermî nas kirina tim mafên kêmaniyên Olî û Neteweyî ên Kurdistanê, weke: Azerî, Ermenî û Cihûyan bû. Di wî warî de, serbarê pêk anîna keys û delîveya bedew ji bo xwendin û mifah wergirtin ji zimanê Olî û Neteweyî bo wan, Komara Kurdistanê tevahiya wan mafên ku xelkê Kurdistanê hebûn, bo wan misoger kir.

Yek ji pêngavên dine serokên Komarê, pêkanîna Rêxistina Ciwanan, diyarî kirin û weşandina Kovarekê – ***HAWARA KURDISTANÊ*** – bo vê qatê bû. Ewan bi başî ji wê rastiyê fêm kiribû ku çeka mezin ya her neteweyekê hêza hizr û milên ciwanan e û bê perwerde kirin û pêgihandina ciwan û xizmet kirina wan bi civakê û pêşketina welat, azadî û xweşî û bextewerî nahê pêk anîn. Lewre girûpek ji ciwanan ji hêla rayedarên Komarê ve hatin hilbijartin û bo xwendina bilind di warên cur bi cur de bo Soviyetistanê hatin şandin.

Hilbijartina Civata (encûmen) Gundan bo raspartina kar û barên akinciyên Gundan bo wan bi xwe û pişkdarî kirina tim xelkê li kar û barên Gundan de, ji ber ku qasê deshilata hukûmetê li kar û barên xelkê de were kêm kirin û asta berpirsyariya wan di hemberî civakê de biçe pêş.

Serdemê ava bûna Komara Kurdistanê, hevdem bû tevî deshilata berîne Sîstema Êl, Eşîre û Feodalî û Axatiyê. Vê yekê kosp û astengeke mezin li ser rêya pêşketin û pêkanîna guhertinên kûr û berfireh pêk anîbûn. Lawaz kirina deshilata Axa û Began û ava kirina deshilateke nûjen hewcehî bi dem û çaxek zor û darêtina siyasetên dûr û dirêj û tev aliyane hebû. Pêşewa bi başî ji qasê şiyana Axa û serokên Hozan fêm kiribû û dizanî bi çi awayekê bo xizmet kirin û parastina destkeftên Komara Kurdan mifahê ji wan werbigire.

### Gavên Siyasî ên Komara Kurdistanê

Yek ji destkevtên herî mezin û girînge Komara Kurdistanê eva bû ku sîstema Komarî weke mînakek baş ji bo hevalbendî û hevpar bûna qeder û çarenivîsa xortên neteweya Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê da bihête afirandinê. Komara Kurdistanê li Mehabadê bibû mala tev Kurdên azadîxwaz û welatparêz li parên din ên Kurdistanê, bi xasmanî nemir Mela Mistefa Barzanî û hevalên wî û Efserên azadîxwaze Komara Kurdistanê, ku ji çi fidakarî û cangorî kirinekê di pêxema Komarê de neneyî (dirîx) ne dikirin.

Doma wê bo rûpelê 10






# agirî

**Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne Hejmara 3, Januarya 2004**



**Navnîşan:**
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

**Email:**
**Rojnama_agiri@yahoo.com**

Fax: **0012703425105**


**Bo Agirî binivîsînin**

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

**Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:**

Destêwerdana rênûsa nivîsan biket. Van mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.



## Pîrozbahî

Bi hilkevta hatina cejna Qurbanê, em bedewtirîn pîrozbahiyan li hemû Misilmanên cîhan û Kurdistanê dikin û hêvîxwazîn ku ev cejna olî bibe derfetek ji bo pêk anîna aştî û biratiya navbera gelên cîhanê.

**Desteya rêveber ya rojnameya Agirî**

# Hin destkevtên Demokratîk û bajêrvanî ên Komara Kurdistanê

**✍:azadkurdî**

Îsal 58 sal bi ser ava bûna yekem Komara dîroka Kurdistanê li bajarê Mehabadê derbas dibe. Ava bûna Komara Kurdistanê li 2'ê Rêbendana sala 1324'ê Rojî (22.01.1946), ji aliyê PDK Îranê û bi destê Pêşewayê nemire Kurdan Qazî Mihemed bûyereke girînge dîrokî di jiyana siyasî a gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê de afirand. Bo cara yekemîn bû ku gelê belengaz û



bindest e Kurd karî li parek ji Kurdistanê de bi pişkek ji maf û azadiyên xwe bigihîje û deshilateke Kurdî bi sîstema Komarî ava bike.

**Doma wê 19**

## Hinek serhijmêrî û agahî derheq cezayê îdamê

Agahiyên dawî ên Rêxistina taybet bi mafên mirovan ya Efûya navneteweyî derheq cezayê îdamê bi wî awayî ye:

76 welatan cezayê îdamê bi tewawî hilweşandin. 16 welatan cezayê îdamê tenê li warê sûç û gunehên mezin ên mîna cinayetên şer û pêka mafên cezayî ên leşkerî bi xwe rewa dizanin.

20 welatên cîhanê bi kiryar cezayê îdamê bi kar naînin, lê di zagonên xwe de ne hilweşandine.

83 welatên cîhanê her mîna berê, cezayê îdamê dimeşînin.

Bi vî awayî di serdemê niha de 112 welatên cîhanê xwediyê cezayê îdamê ne. zêdetir ji nîviya xulyaqeta cîhanê di wan welatan de dijîn ku cezayê îdamê çi ninin.

Sala 1899'an li destpêka sedsala 20'an de tenê 3 welatên cîhanê, cezayê îdamê têda çi nebû. Kastarîka, San Marîno, Wênzoêla. Heta sala 1948'an ku sala belav bûna daxuyaniya cîhanî a mafên mirovan ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve, hejmara wan cure welatan gihîşte 8'an. Di sala 1987'ê de bûn 19 welat. Li destpêka dehsala 90'an a sedsala derbas bûyî were hetanî niha, li serhev 40 welatan cezayê îdamê hilweşandine yan jî aliyê kêm di çaxê aştiyê de na meşînin.

Di sala 2002'an de aliyê kêm 1526 girtî li 31 welatên cîhanê de hatine îdam kirin. Bi vê pêkê hejmara wan hikmên îdamê ku birêve çûne, li çav sala 2001 an (3048) gihîştyê niviyê. Li sala 2002'an de 3248 kes li 67 welatan de bi mirinê hatine mehkûm kirin. Diyare eva tenê wan hejmaran digire ku jêbihorîna navnetewî ji wan agehdare. Wek salên derbaz bûyî zaftirîn hejmara îdaman di hejmareke kêm ji welatan de birêve çûne. Di sala 2002'an li welatê Çînê de aliyê kêm 1060 kes hatine îdam kirin. Di Îranê de 113 kes, di Dewletên Yekbûyî ên Amerîkayê de 71 kes.

Li gor agahiyên saziya navneteweyî a efûya Giştî 81 li sed a îdamên cîhanê di 3 welatên Çîn,Îran û Amerîkayê de birêve çûne.

***Çavkanî: sayta "Îran Emroz"***